

# Rojeva Enqerê neft e

Serokê Herêma Kurdistanê Nêçirvan Barzanî li ser daxwaza Serokwezîrê Tirkiye Tayyîp Erdoğan bi şandeyek qerebalix hat Enqerê û di civînan de niqaş li ser rewşa Iraqê û nefta Kurdistanê hatin kirin.

➜ 5



# Pakêt bi rê ket!

Hukumetê piştî nîqaşên ku li gel Ocalan û HDP'ê heta niha hatine kirin paketek ku ji 7 bendan pêk tê amade kir û beriya ku parlemento bikeve betlaneyê wê yasa bê derxistin.

➜ 10


**BasNûçe** HERDEM RASTÎ

ROJNAME YA HEFTEYÎ YA NÛÇEYÎ • BIHA 2.5 TL

HEJMAR 10 • 28 HAZÎRAN - 4 TÎRMEH 2014 • WWW.BASNEWS.COM


# Hewlêrê guhe Kerry kişand




➜ 4

Piştî bûyerên dawî yên li Iraqê Wêzîrê Karê Derve yê Emerîka John Kerry bi lez hat serdana Bexda û Hewlêrê. Kerry ji Barzanî daxwaza piştgiriya damezirandina hukumeta Maliki kir. Herwiha Kerry xwest ku Pêşmerge li dijî DAIŞ'ê alikariya arteşa Iraqê bike. Lê belê Barzanî daxwazên Kerry retkirin û got nabe ku Maliki li ser postê xwe bimîne.

Barzanî di hevdîtina bi Kerry re rewşa Iraqê bi bîrxist û got, "Em ji bo çareseriya pirsgirêkan di nava hewldanê de bûn. Lê di encamên dawî de derketiye holê ku em ji bo pêşeroja Kurdistanê biryara xwe bixwe bidin. Eger ku rewş wiha here emê biryarê li ser çarenivîsa xwe bidin." Barzanî daxwaza Kerry ku yekî kurd ji bo serokkomariya Iraqê nîşan bidin jî red kir.

## Dengbêja bajaran!



Xalîde ku wek dengbêjek hemdem distrê û li ser mûzîka kurdî xebatê dike, niha jî amadekariyên albûma xwe ya duyem dike. Xalîde li metropolê dengê koçeran vedide.

➜ 16

## Neft têrî serxwebûnê nake



Dr. Serdar Azîz: Emerîka nikare demek dirêj dijberiya firotina nefta Kurdistanê bike û sedemê vê dijberiyê xetera parçebûna Iraqê ye. Li aliyê din neft têrî serxwebûnê nake.

➜ 9

➜ 13

## Gola Urmiyê ziwa dibe



Gola Urmiye ji ber çêkirina bendav, rê û vedana bîran ber bi ziwabûnê ve diçe. Ku tedbîr neyên girtin gola qîmetgiran wê ziwa bibe.

➜ 15

## Şaristaniya ronahiyê



Komagene ya ku wek mîrnîşîna aştiyê tê zanin, li qada lihevrasthatina şaristaniya rojava û rojhilat li newazeyeke sirûştî hatiye avakirin.

# Deşta bihûştî: Mêrdîn

WELAT BAZ

Bajarê Mêrdînê di navbera eyalatên Amed, Xerzan, Botan, Herema GAPê û Rojavayê Kurdistanê de cîh digre. Bajêr di nava hêlîlarên 39 û 42 û di nav hêlîpanên 36 û 37an de cîh digre. Pîvana xaka Mêrdînê 9 hezar km² ye. Erdnîgari ya herêmê % 52,6 çiya, % 24,6 deşt û ji % 22,8 jî ji platoyan pêk tê. Başûrê xaka bajêr seranser deşt e. Deşta mezin a Qoserê, ji Serêkaniyê destpêdike û li kêleka sînorê Rojavayê Kurdistanê ber bi Nisêbînê ve dirêj dibe. Ev deşt 35 km dirêj û 20 km jî fireh e. Deştên Mêrdîn û Nisêbînê berdewama Deşta Qoserê ne. 90 km dirêj û di navbera 5 û 10 km jî firehin. Ji ber ku çavkaniyên avê kêmin, çem havînan ziwa dibin. Li deştên Mêrdînê piranî kiştûkala bejî tê kirin û berhemên wek genim, ceh, nîsk tên çinîn. Li deverên ku avî ne, an jî derfeta avdanê heye, pembû tên ajotin. Her sal bi hezaran gundî di eşêfkirin û berhevkirina pembû de kar dikin. Li xaka dewlemend a Mêrdînê çavkaniyên binerdê jî hene. Li nêzî nawenda bajêr û li Navça Nisêbînê 70 mîlyon ton rezerwên çîmento heye. Li nêzî Navça Şemrexê çavkaniyên dewlemend ê fosfatê, li nêzî Nisêbînê jî rezerwên petrolê hene.

**Çiya**

'Berriya Mêrdînê beriyeke dûz e, Pozê Qerejdaxa şewitî di ser de xûz e.' Di erdnîgari ya Mêrdînê de ji bilî deştan, çiya û girên navdayî jî hene. Li ser xaka bajêr, ji Şemrex heta Mîdyadê de çiyayên bilind hene. Çiyayê Mawal, Çiyayê Metîna, Çiyayê Omeriyan, Çiyayê Bagokê, Çiyayê Dêrika Mazî, Çiyayê Eynkafê, Çiyayê Stewrê û Çiyayê Qerej çend ji çiyayên Mêrdînê naskirîne.

**Rêvebirî**

Bajêr li gor sîstema rêvebiriyê parêzgeh e. Bi navên Kerboran, Dêrik, Xoser, Şemrex, Mîdyad, Nisêbîn, Omeryan, Sitewr û Rişmil 9 navçe bi Mêrdînê ve girêdayî ne. Herwiha 16 xopan û 521 gundên bajêr jî hene. Şêniya bajêr li gor hejmarên sala 2013'an nêzîkî 800 hezarî ye.Mêrdîn heta salên 1990an di warê pergala îdarî de parêzgeheke fireh bû. Navçên wek Cizîr, Sîlopî, Hezex û Kercews jî bi vî bajarî ve girêdayî bûn. Ber bi salên 1990an ve ku têkoşîna netewî bilind bû, rejîmê ji bo têkiliya gel ji hevûdû qut bike û heremê bike devereke leşkerî, sînorên îdarî guhert. Bi vê mebestê Mêrdînê biçûk kir û çar navçeyan ji Mêrdînê veqetand. Mêrdin ji bakûr ve cîranê Amed û Batman, ji rojava ve cîranê Ruha, ji rojhilat ve cîranê Şirnex û ji başûr ve jî cîranê Qamişlo ye. Hijmara rûniştvanên bajêr tevî şêniya navçeyan ji pênsed hezarî zêdetir e. Kurd ên Mêrdînê bi tevayî sunnî ne. Heta salên dawîn li navçeya Nisêbînê hin kurd ên Êzdî jî hebûn. kurd ên Mêrdînê bi zarava kurmancî diaxifin. Mêrdîn bajareke pirreng e. Heta îro li heremê kurd , ereb, suryanî û ermenî bihevre jiyane. Dîsa olên wek îslam, Mesîhî û êzdîtî jî li ser xaka Mêrdînê di nav hev de bûne. Li navçên Mîdyad, Omerya, Rişmil û Stewrê jî hin Mehelmî dijîn. Mehelmî ku bi eslê xwe suryanî ne û 400 sal berê bi zora Osmaniyan bûne misilman, piranî bi zimanê erebî û kurdî diaxfin.

Dema navê Mêrdînê tê gortin suryanî tên bîra mirov. Suryaniyên ku vê heremê wek Tor Abidîn binav dikin, ji rûniştvanên heremê ê herî kevnin li navenda bajêr û li Navçeya Mîdyadê dijîn.



**Nav**

Navê Mêrdînê cara yekem b.z di sedsala 4an de, di bîranînên dîrokzan Marcellîûs de derbas dibe. Marcellîûs behsa rêya Nisêbîn û Amedê dike û wiha dibêje; 'Ev rê ji ser Çiyayê İzala, ji nêzî Kela Maride û Kela Lorne de derbasdibe.'

Navê Mardîne di çavkaniyên Persiyan de wek 'Marde', di çavkaniyên Bizansiyan de 'Mardîa', di ê ereban de jî wek 'Marîdîn' derbas dibe. Suryaniyên heremê jî ji bajar re 'Marde', 'Merdo', 'Merdî' an jî 'Merde' digotin.

Li gor dîrokzan Hammer jî, navê 'Marde' ji qewmê Marde tê, ku ew di demên kevn de li heremê bicîh bûbûn.Li gor çîroka li ser navê bajêr, peyvên 'Merdo' an jî 'Marde', tê wate ya 'keleh'. Ji ber ku li heremê di demên berê de gelek keleh hebûne, ev nav li bajêr hatiye danîn. kurd ji bajêr re 'Mêrdîn', tirk jî 'Mardin' dibêjin.

**Dîrok**

Li Mêrdînê dîroka şaristaniyê b.z di salên 2 hezaran de di dema Hûrrî-Mîttaniyan de destpêdike. Helbet ne tenê nawenda Mêrdînê devereke kevnare ye, navçên wek Nisêbîn, Mîdyad û Stewrê jî bi qasî Mêrdînê kevnin û li van deveran jî gelek rêç û berhemên dîrokî hene.Berî zayînê di sedsalên 12an de Asûrî heremê bidest dixin. Salên 600an dema desthilatiya Meda ye. Med 150 sal li Mêrdîn û Mezopotamya hukum dajon. Paşê bi dorê Artêşa Persiyan, a İskender, a Abgaran û a Roma û Bîzansiyan heta sefera Artêşa Ereb a salên p.z 640an, xwedîtiya heremê dikin.

Di salên 1147an de Mêrdîn dikeve destê Zengiyan û paşê jî derbasî Eyûbiyan dibe. Piştî têkçûna Eyûbiyan Mêrdîn û derûdorê heta ji alî Osmaniyan ve tê dagirkirin, gelek car ji ali Moxol, Memlûkî, Aqqoyînî û Sefewiyan ve tê talankirin.

Mêrdîn di sala 1517an de dikeve destê Artêşa Osmanî. Li herema Mêrdînê li dijî Osmaniyan serhildana pêşîn di sala 1832an de derdikeve. Di şerê navbera Osmanî û İbrahîm Paşa yê Misrî de, Mêrdîniyan alîkariya İbrahîm Paşa kirine û bajêr ji bo demekî ji Osmaniyan rizgarkirine. Piştî salên Serhildana Bedirxan Beg a sala 1847an, herama Mêrdîn dikeve nav tengazariyên mezin. Di sala 1857an de li Mêrdînê berfa mirinê dibare. Seqema vê salê dibe sedema mirina bi hezaran însanan. Di 1865an de li Mêrdînê nexweşiya kolera belav dibe û dîsa bi hezaran kes jiyana xwe wenda dikin. Di sala 1880an de jî li bajêr ji sedemê xelayê gelek kes dimrin. Bûyer derdikevin. Salekî piştî xelayê jî Sûka Mêrdînê dişewite û talan dibe. Mêrdîn di van salên karesatan de qezayekî Eyaleta Diyarbekir e.

Mêrdîn di bîranînên gelek gerok û seyyahan de derbas dibe. Seyyah Ewliya Çelebî di bîranînên xwe de Mêrdînê wiha taswîr dike: 'Keleha Mêrdînê di nav kevana Dîjlê de, li deştekî ku ji Firadê dû menzîl dûr, li ser zinnarekî bilind ê rengewr de ye. Ji tasvîrkirin û şîrovekirina wê re ne ziman ne pênûs têr dike. Min gelek kelehan dît, lê tû yek jî wek Keleha Mêrdînê ne bi haşmet û ezamet e.'

İbnî Batûta û Katîp Çelebî jî behsa Mêrdînê dikin û peznê delaliya herem û Keleha Mêrdînê dikin. Mêrdîn ji demên kevn virve wek maketeke Rojhilata Navîn bûye. Heta salên dawîn li Herema Mêrdînê suryanî, ermenî û kurd di nav hev de jiyane. Li gor salnameyên kevn, di serê sedsala 20an de ji sisêyan yekê şêniya heremê suryanî û ermenî bûne. Lê ew dewlemendî û rengên cihê bûn qurbana siyaseta Dewleta Osmanî. Di



dîroka Osmaniyan de yek ji rûpelên rêş fermana suryanî, ermenî û êzdiyên e. Di qatlîama sala 1915'an de Qesra Osmanî bi tevî alîkariya hevkarên xwe, li Herema Mêrdînê bi dehhezaran suryanî, ermenî û êzdî kuştin.

**Serhildanên Mêrdînê**

Di serê Sedsala 20'an de wek hemû Kurdistanê, li Mêrdînê jî serhildanên netewî destpêkirin. Di sala 1912'an de Xelilê Remo, di bihara sala 1919an de jî Elîkê Betê li herema Mîdyadê li dijî Osmaniyan tevî hêz û eşîrên heremê serhildan. Di Serhildana Şêx Seîd a sala 1925an û di Serhildana Araradê a sala 1928'an de, hêzên Rêxistina Xoybûnê li Herema Mêrdînê, li ser sînorê Rojavayê Kurdistanê êrişî artêşa tirk dikirin. Ev pevçûn bi piranî li Çiyayên Bagokê û li derûdora Nisêbînê derdiketin. Di êrişên Xoybûnê ê sala 1926'an de Haco Axa tevî hevalên xwe yên Xoybûnê rolekî mezin leyîst. Piştî ku serhildan têk çûn, hêzên dewletê li Mêrdînê, li gûndê Eleqemşê û li derûdorê qetlîaman kirin û bi hezaran kurd kuştin. Piştî ev qetlîaman bi hezaran gundiyên heremê berê xwe dan binxetê, Rojavayê Kurdistanê.

**Salên dawîn**

Ber bi salên 1960'an ku li Kurdistanê bayê netewî bilind bû, herema Mêrdînê jî girt bin bandora xwe. Nivîskar Musa Anter, parêzer Edip Karahan û gelek rewşenbîrên din ku ji herema Mêrdînê derketibûn, di xebatên kurd ayetiyê de serî dikşandin. Bajêr ber bi salên 1980'an yek ji heremên serhildêr bû. Di van salan de gelek rêxistinên welatparêz jî li Mêrdînê xebatên aktif dikirin. Di van salan de li heremê di nav hêzên kurd de jî pevçûn û pozberî derdiketin. Li dijî pêlên tevgera netewî, rejimê jî tedbîrên tund distend. Bi destpêka şer ve li Mêrdînê ji hin eşîrê cerdewan hatin birêxistin. Li Dêrikê, Mîdyadê, Çiyayê Mazî, Sitewrê, Omeryan û Nisêbînê gelek gund hatin şewitandin û valakirin. Li navçên wek Nisêbîn, Mîdyad, Xoser û Şemrex şebekeyên mêrkuj piştî salên 1991an bi sedan welatparêz kuştin. Di vê kampanya kuştinê de Mebûsê Merdînê Mehmet Sîncar jî di sala 1993an de li Batmanê ji alî tetîkkêşên fermî ve hat kuştin. Mêrdîn di nav agir û dûxanê de bû. Bajêr bûbû laboratûwara şerê taybetî. Di şer de li Mêrdînê bi sedan şerwan û welatparêzên kurd jî jiyana xwe wendakirin. Di şerê 1984'an de serhildanên pêşîn li Eyaleta Mêrdînê teqiyan. Helbet ew encamê şerê çekdarî û xebatên dûrûdirêj bûn. Di 15'ê Adara 1990an de gelê Nisibînê serhilda. Girgê Emo jî ku di sala 1989'an de li ser kuştina 6 gundiyan serhildabû, wê demê nevça Mêrdînê bû. Serhildan wek pêlekî agir di demekî kind de li derûdorê belav bû. Kurdistan edî li ser lingan bûn. Roj bê serhildan û çalakiyên protestoyan derbas nedibûn. Di hilbijartinên piştî salên 1990'an de Mêrdîniyan êdî berendamên xwe hildibjartin. Wek encameke ecêb ê hilbijartinên belediyan ê sala 1999'an, de li navçên Dêrik û Qoserê dû jinên kurd biserketin.



**Jiyana Rojane**

Gogên radarên NATO'yê ku li ser Kela Mêrdînê hatine danîn êdî bûne wek sembola vî bajarî. Kela Mêrdînê di sedsala 10an de hatiye avakirin û li ser girekî 1800 metre bilind hatiye danîn. Şaredarê Mêrdînê Ahmet Türk dixwaze ku ev bermahiya kevnare ku ji aliyê leşkeran ve hatiye dagirkirin bê valakirin û ev dever ji tûrîzmê re bê vekirin. Mêrdin li Kurdistanê di warê bajarvanî û mîmarî de deverekî balkêş e. Bajêr li başûrê quntarên Çiyayê Mazî hatiye damezirandin. Xaniyên Mêrdînê ji dûrî ve wek ku li ser hevin tên dîtin. Bajarê Mêrdîn li ser heremeke volqanîk hatiye avakirin. Xanî û avahiyên din ji kevirên qalker tên lêkirin. Dîwarên ku ji van keviran tên rîsandin, zivistanan germ, havînan sarin. Mîmariya ku ji kevirên spî ê birrandiye heta îro jî didome. Di hin avahiyan de li kêleka keviran kelpîç xwe ya dawîn dijî. Cadde û kolanên Mêrdînê ji rojhilat ber bi rojava ve bajêr ji hev diqetîne. Li derûdora Sûka Mêrdînê kolanên teng û serbejêr ku bi kevirên spî hatine raxistin dirêj dibin. Ev kolan li hin deran wiha tengin ku, wek hewşên xaniyan tên dîtin. Hin kolan di nav xaniyan de derbas dibin. Çûndin û hatina kolanên serbejêr bi derencikan dibe.

Ji ber zahmetiya çûndin û hatina kolanan de ji bo birin û anîna barên giran ker an jî qantir tên bikaranîn. Ev hewyanen kedkar ji bo berhevkirina çopên bajêr jî dixebitin û di belediya bajêr de bi awayekî fermî kardikin.

**Dêra Mardinê**

Dengê zengilê dêran li Mêrdînê wek demên kevn ne xurtin. Suryanî ku yek ji xwediyên bajêrin, îro li ber xetera nemanê ne.



Dêrên Mêrdînê mînakên mîmariya kevnin. Li gor rahibê Dêra Qirqler Gabriel Akyüz, li Mêrdînê di sala 1998an de 400 Suryanî tenê mane. Ew gelek xemgîne ku niha di bin bana dêra wan de ji Cemaata Suryaniyan gelek kes nemane.

jî tên bikar anîn. Mîmariya van xaniyan wek mînakên xurt ê avahiyên kevirînin. Li heremê hunermendiya kevirîn wek karê Mîdyadê tê binavkirin. Suka Mêrdînê wek bajarekî ji dema çîrokan maye. Di nav kincên rengareng de, di kolanên teng de rûniştvanên Mêrdînê ji destpêka şeveqê heta tariya êvarê di nav dikkanan de digerin. Gelek hunermed û pîşekarên rewşên Sûka Mêrdînê ê wek hesinker, kurtanvan, cîldvan û nalbant ji bêkesî û tengezariyan gazinan dikin û heyfa xwe tînin ku pişeyên wan dema

**Deyrul Zaferan**

Deyrul Zaferan di sala 493an de hatiye çêkirin. Navê manastirê ji giyayê zaferanê tê. Li gor rîwayetan di çêkirina avahiyê de, ji bo zexmbûnê, barê 40 deveyan zaferan hatiye bikaranîn.

Manastir dema hatiye avakirin li kêleka rêya hevreşim bûye. Ji aliyê din ve li gor hin çavkaniyan ji ber ku li derûdora manastirê giyayê zaferan hebûye û ev giya bala karwanên bazirganiyê kişandiye û vî navî lêkirine. Deyrul Zaferan 5 km li rojhilatê Mêrdînê ye. Li nêzî manastirê Dêra Dayika Meryem û Mar Yakûb jî hene, ku ew di zinnaran de hatine kolan.

Ev manastir 632 sal wek nawenda suryanîtiyê hatiye bikaranîn. Paşê di sala 1932an de Patrikê Suryaniyan Mar İxnatyos Afrên Barson ji alî rejimê ve ji Mêrdînê tê derxistin û Deyrul Zaferan jî vê taybetiya xwe wenda dike. Diwarên pêşîn û odeyên rahîban di nav vê avahiya 110 salî de ne. Deyrul Zaferan li ser bingeha ateşgeheke bawermendên Ola Behdîniya (Zerdeştî) hatiye avakirin. Ev ateşgeha ku 2000 saliye di sala 1800'an de di bin asasên Deyrul Zaferan de hatiye dîtin. Kevirên mezin ê ateşgehê bê kember û bê kirêc û çîmento derbasî hevûdû bûne û li jor hatine sekinandin. Her kevirek 2 metre direjin. Di atêşgehê de cîhê îbadeta rojê û mekana qurbanan jî heye.

Qebristana Deyrul Zaferan 1500 sal wek fakulteya tibî hatiye damezirandin. Piştî demekî dibe qebristan. Niha di qebristanê de 12 hezar ezîz, patrîk û metropolît radizên. Dêra manastirê di sala 495'an de hatiye avakirin. Navê vê dêrê Mar Hananya ye. Li Deyrul Zaferan meqamê partîk û metropolît cîhekî mustesna ye.Li gor baweriya Îsewî hemû însan guhehkar dizên. Îsewî ji bo zarokan ji gunehên wan pakijbikin, wan waftîz dikin. Zarokên suryaniyan jî di dêra Deyrul Zaferan de tên vaftîz kirin. Mîhraba dêrê 300 sal berê li ser mozaîqekî 1500 salî hatiye danîn. Mîhrab bê bikaranîna bizmaran bi cîhê xwe ve hatiye zeliqandin. Textênrewanê sêsed salî, ji bo birin û anîna patrîk û metropolîtan tê bikaranîn.

Xalê Bahê ji bo Suryaniyan belkî jî qasî Deyrulzaferan ecêb e. 50 salê wî ji bo xizmeta manastirê derbas bûye. Gelek kes ji bo dîtina wî tên Deyrul Zaferan. Li gir û çiyayên bakûrê manastirê cîhên înzîwayê hene. Van deveran 1800 salî ne. Ji alî rahîban ve ji bo perwerde û tefekûrê tên bikaranîn. Her sal bi hezaran suryanî Deyrulzaferanê ziyaret dikin. Mêvanên manastirê bi piranî ji dervayê welat, ji Awrûpa, Amerîka û ji Tirkiyê tên manastirê.

# Barzanî daxwazên Kerry bi cîh neanî

Piştî ku DAIŞ'ê berê şer da Bexda'yê û hin bajar bidestxistin nexşeya Rojhilata Navîn jî hat asteke guherînê. Di vê çarçoveyê de serxwebûna Kurdistanê jî êdî bi aşkere tê nîqaşkirin. Li ser encama bûyerên dawî Wêzîrê Karê Derve yê Emerîka John Kerry bi lez hat serdana Malikî û Barzanî. Kerry di hevdîtana bi Barzanî re daxwaza ku kurd ji Iraqê venekşin kir lê encama ku hêvî dikir bi dest nexist. Piştî Kerry vê varê Wezîrê Karê Derve yê Ingiltere William Hague hat Herêmê û bi berpirsên Kurdistanê re li ser heman mijar û daxwazê hevdîtin pêk anîn. Bi aloziya ku DAIŞ'ê li Iraqê asê kir re polîtakayên hêzên navneteweyî ketin talûkeyê û Iraq di demeke ku nikaribe hukumeta xwe jî ava bike de teslîmî şer bû. Ji ber ku şiî û sunne lihev nakin hukumeteke bi hêz nayê damezrandin ku bikaribe welat ji rewşa aloz xilaske. Bi vê minasebetê rola kurdan ya ku wek parçeyek ji Iraqê bimîne girîngtir dibe. Kerry û Hague jî bo ku Barzanî ji bo vê qanî bikin hatin heremê, lê daxiyaniyên rêvebirên kurdan daxwazên ban bi cîh neanîn.


Kerry li gel Barzanî

**Hewlêrê guhê Kerry kişand!**
Piştî civîna li Bexda'ye ya bi Maliki re Kerry derbasî Hewlêrê bu û li balefirgehê ji aliyê Berdevkê Dîwana Serokatiya Heremê Felah Mistefa ve hat peşwazîkirin. Nêzikahiya sar ya rêvebirên Kurdistanê ku Kerry ji aliyê wezîrekî ve jî nehat pêşwazîkirin bû sedema balêkişyê. Tê gotin ku sedema vê ev e ku ziyareta Barzanî ya Emerîka hatibû taloqkirin e. Heya niha dema ku Wezîrê Karên Derve yê Emerîka dihat, ji aliyê Serokwezîr Neçîrvan Barzanî ve dihat Pêşwazîkirin. Wek tê zanîn dema ku Kerry li Bexda'yê bû xwestibû ku Hukumeta Kurdistanê şandeyekê bişînê Bexda'yê. Lê ji ber ku rêveberiya heremê ev xastek bi cîh neanî, Kerry neçar ma ku ji serdana xwe ya Urdûnê vegere û bê Kurdistanê.

**Kerry: Ji Iraqê venekşin**
Kerry ligel Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî û Cîgirê wî Qubad Talebanî, Serokê Tevgera Goran Noşîrwan Mistefa û berpirsên din ên hikûmeta Herêma Kurdistanê civînek pêk anî. Di civînê de peyama ku di nava mixalefet û hukumetê de yekitiyek heye hat dayîn. Di hevdîtinê de Kerry daxwazî ji serkirdayetiya siyasî ya Kurdistanê kir daku ji proseya siyasî ya İraqê venekişin, tevî hikûmeta koalîsyonê ya İraqê bibin û herwiha kesekî bihêz ji Kurdan bo serokatiya İraqê were namzetkrin.

**Barzanî: Kurd dê biryara pêşeroja xwe bidin**
Her çiqas Kerry ji bo nêzikahiya Kurdistanê ya li hember aloziya Iraqê spasiyên xwe pêşkêşî Barzanî kiribe jî, Barzanî bala wî kişand ser rewşa Iraqê ya nû û helwesta Kurdistanê ku êdî biryara pêşeroja xwe bixwe bidin. Barzanî di civînê de wiha axivî; "Em ji bo çareseriya pirsgirêkên li Iraqê di nava xebat û hewildanê de ne. Lê divê Malîkî dev ji serokweziriyê berde. Êdî dem dema ku gelê kurd biryara di derbarê pêşeroja xwe de bide hatiye. Ji ber ku piştî tiştên ku me tecrübe kirine derketiye holê ku em dê bi vî avayê nikaribin dewamkin. Iraq a ku niha em lê dijîn, ne Iraq a beriya du hefteyan e." Piştî hevdîtina bi Kerry re Barzanî bi daxuyanekê jî ragehand ku niha dema wê hatiye ku hevwelatiyên Kurd biryarê li ser paşeroja xwe bidin. Barzanî wiha axifî; "Niha dema wê yekê hatiye ku hevwelatiyên Kurdistanê paşeroja xwe diyar bikin û divê em jî biryara wan cîbicîh bikin. Eger rewş wiha here emê herin refarandûmê û wê demê hevwelatî dê biryarê li ser çarenivîsa xwe bidin. Kurd beşdarî proseyeke siyasî ya Iraqê ku nabin eger hevbeşên wê nasnekin û nizanibin bernameya wê hikûmetê çiye."
Kerry dû re bi Serokwezîr Neçîrvan Barzanî re hevdîtenk pêk anî. Beriya hevdîtinê Kerry li deftera bîranînê ew tiştên balkêş nivîsîn: "Ez bextewarim ji bo ziyareta xwe ya li gel Kurdistanê. Ji bo vê pêşwazîkirina germ, spasdarim ji Serok Barzanî re. Ez li hember pêşveçûn û serkeftinê Herêma Kurdistanê matmayî mam û ez heyran mam li hember van pêşveçûnan"

**Em naxwazin bibin esîrê gumana**
Barzanî di hevpêyvîna bi Amanpour re ya ji bo CNN'ê de jî diyarkir ku dem hatiye ku ew pêşeroja xwe diyar bikin û gat ku Iraq belav bûye û dema diyarkirina çarenûsa wan hati ye. Barzanî encamên erîşên DAİŞ'ê jî nirxand û nîşan di derbarê serxwebûnê de dan. Barzanî li ser mijara Kerkûkê jî sekini û wiha got, "Em tu carî neketin gumanê ku perçeyek ji Kurdistanê ye. Tenê rêya hevkirinê bi hukumeta navdî re rêveberiyek hevpar ya şîa û sûniya ye. Berpirsê tiştên ku li Iraqê diqewime tenê DAIŞ nîn e. Rêxistinê aloziyên bi Malîkî re vegerand firsendê. Gelê li vir serî li dijî polîtîqayên şaş rakir. Ev hêrsa gel e. Emerîka her dem ji me re dost bû û me jî dostiya xwe nîşan da. Serkeftina Kurdistanê, tekane serkeftina polîtîkayên Emerîqayê ye. Emerîka firsend da ku Iraqek modern, demoqratîk bê avakirin. Mixabin wanê din ev tişt nedîtin. Kerkûk bajareke Kurdistanê ye. Xala 140. dibê pêk bê. Ev deh sale em li bendê ne ku ev xal pêk were. Lê hukumeta navendî cîdî nîne. Pêkhatinên nû Kerkûkê tevlî Kurdistanê kir. Me hê referandûmê nekir lê emê bikin. Ku serxwebûna Kurdistanê naxwazin jî em rêz li fikrê hemwelatiyan digrin."


Kerry li gel Maliki

**Daxwaza Kerry mayîn a Maliki ye**
Piştî hevdîtina bi Maliki Hoşyar Zebari re John Kerry ragihand ku Emerîka ne di nava hewildaneke ku Maliki têk biçe de ye û Emerîka jî di nav de, mafê tu dewletan nîn e ku bandorê li hilbijartina serokwezîrê Iraqê bikin û gelê Iraqê dê bixwe serokwezîrê xwe hilbijêre.
Herwekî din Kerry destnîşankir ku piştgiriya Emerîka ya li gel arteşa Iraqê wê bidome û wiha dirêjî da axaftina xwe, "Bi vî avayî arteş dê bikaribe ku bi avayekî xurt ji bo heremê têbikoşe.

Emerîka ne berpirsê krîza ku niha li Iraqê didome ye. Emerîka ji ku Iraqî hukumeta xwe bixwe damezrînin pir xebitî û pir jî wendahî lê hatin. Iraq di pêvajoyek giran re dirbas dibe û pirsgirêka herî girîng damezrandina hukumetê ye. Divê di nava mehê de hukumet bi lezgînî bê damezrandin."

**Rojhilata Navîn di aloziya DAIŞ'ê de**

Di vê navberê de êrîşên DAIŞ'ê jî berdewam in. Her çiqas meşa rêxistinê ya ber bi Bexda'yê ve li bajarê Samara yê ku 110 kêlometre nêzî paytextê ye asê mabe jî, li cihên ku bidestxistiye DAIŞ her diçe bi cih dibe.



Li Amedê ji bo piştgiriya Pêşmerge xwepîşandanek hat lidarxistin.

Misûl êdî bajarekî DAIŞ'ê ye û çend bajar û navçeyên mezin jî di heman rewşê de ne. Tê zanîn ku rafineriya Iraqê ya herî mezin a li Beycî bi temamî di destê DAIŞ'ê de ye. Li gor nûçeyên dawî rafineriyeke din a mezin Acil jî ket destê rêxistinê. Her çiqas Hukumeta Iraqê piştrastiya vê neke jî şerê DAIŞ'ê yê li ser neftê dijwartir dibe. Di vê çarçoveyê de şerê neftê yê di navbera şiî û sunneyên ku DAIŞ pêşengiyê dike kûr û talûketir dibe. DAIşê ji bilî ku destê xwe da ser navçeyeke fereh li naverasta Iraqê bi taybet ew bajarên ku piraniya xelkê wê Sine ne herwiha destê xwe danî ser hemû xalên sinûrî yên navbera Iraq û Sûriyê de tenê xala Rebîe ne be ku paş vekişîna leşkerên Iraqê hêzên pêşmerge ew xal kirin bin kontrola xwe.

Her çiqas êrişên Esmanî yên Artêşa Îraqê ji destpêka rûdanê ve ketiye tevgerê, lê çavkaniyên li navçeyê behsa êrişa balefrên rejîma Sûriyê dikin bo ser cihên DAIş bi taybet li gund û bajarokên Iraqê yên nêzîkî sinûrê Sûriyê.

**Miladinof: Emê êrîşî DAIŞ'ê bikin**

Nîkolay Miladînof Nûnerê Taybet ê Emîndarê Giştî û Serokê Şanda Emerîka'yê jî di daxuyanekê de bo Iraqê daxwaza bikaranîna hêzê kir li dijî DAIŞ'ê. Mîladînof herwiha got ku hejmara kuştiyan li Iraqê ji destpêka ketina DAIŞ'ê ya Misûlê vir ve geheştiye 1300 kesî û 1250 kesên din jî birîndar bûne. Wekî din ev di demekê de ye ku raporên rojnamevanî yên Emerîka behsa şandina alavên leşkerî dike ji aliyê Iranê ve ku di nav de hejmarek Balefrên Ebabîl yên bê firokvan jî hene.

**Şer ket navbera Pêşmerge û şiîya**

Di vê navberê de hejmarek çekdarên Şîe li nehya Taze ya Kerkûkê bazgehekê danîne, dema Hêzên Pêşmerge xwestine biçin cepheya şer, bazgehê astenî derxistine û alozî ketiye navbera wan.

Li gor agahiyan di navbera Pêşmerge û milîşiyayên Şîe de teqe hatiye kirin û di encamê de çekdarekî milîşiyayên Şîe hatiye kuştin. Di heman demê de mifrezeyeke asayîşa PDK li Duzxurmatû dest danîn ser du otomobîlên pîkap ku ji firokexaneya Kerkûkê çek ji milîşiyayên Esaîbî Ehlî Heq re dibirin. Herwekî din piştî kontrolkirina bajarê Mûsilê ji aliyê çekdarên DAİŞ'ê ve û derxistina hejmarek biryarên taybet, zexta li ser Kurdên Şebek û Mesîhiyên wî bajarê zêde bûye. Ligel kuştin û revandina hevwelatiyên sivîl û bê tawan ji aliyê çekdarên DAİŞ'ê ve, herî dawî di kiryareke nemirovane de li rojhilatê bajarê Mûsilê 21 Kurdên Şebek ber bi cihekî nediyar revandin.

**DAIŞ li Karakûş'ê ye**

Şerê DAIŞ'ê ku heya niha berê xwe nedabû Kurdistanê destpêkir ku li vir jî belav bibe. Komek çekdarên rêxistinê li Navçeya Karakûş ya bi ser Misûlê ve ku suryanî lê dijîn zext û zordariyan girantir dikin û hevwelatiyên suryanî dest bi koçê kirin.

**DAIŞ gihêşt Iranê**

Wekî din, hat zanîn ku çekdarên DAİŞ'ê xwe gehandine Îtanê û 4 kes kuştine, lê heta niha kesek nehatiye girtin û nayê zanîn ka kî bûne. Li gor agahiyan li qezaya Sedefî ya Bawecanî li nav bajarê Taze, 4 kes ji hêza ewlekariya siyasî ya Îranê hatin kuştin."

Heman çavkanî wiha axifî: "Ji wan çar kesan sê piledar in û yek ji wan jî leşker e, kes jî nizane kî bûn ên ew kes kuştine û heta niha kes li ser bûyerê nehatiye girtin, tenê di nav xelkê de gotegotek belav bûye ku çekdarên DAİŞ'ê ew kuştine."

# Mijara Enqerê neft û DAIŞ e

Serokê Herêma Kurdistanê Nêçirvan Barzanî li ser daxwaza Serokwezîrê Tirkiye R. Tayyîp Erdoğan bi şandeyek qerebalix hat Enqere'yê û di civînên bi Barzanî re niqaş li ser rewşa Iraqê hatin kirin.

Piştî daxwaza Erdoğan, Barzanî bi şandeya ku Cîgirê Serokwezîr Qubad Talebanî, Wezîrê Karê Enerjiyê Aştî Hawramî, Sefîn Dizeyî Berdevkê Hukumetê û Waliyê Kerkûkê Necmedîn Kerîm jî di nav de ne hat Enqere'yê û li gel Wezîrê Karên Derve yê Tirkiye Ahmet Davutoğlu, Wezîrê Enerjiyê Taner Yıldız, Musteşarê MIT'ê Hakan Fidan û Musteşarê Wezareta Karên Derve Feridun Sinirlioğlu hevdîtinek pêk anî.


Neçîrvan Barzanî li gel Erdoğan

Barzanî, piştî civîna ku li Wezareta Karên Derve dora du seatan domkir, vêcarê li gel Serokwezîr Erdoğan civînek kir û li gor agahiyên Serokwezîriya Tirkiye di civînê de bi taybetî mesele ya Misûl û Kerkûkê hat nîqaşkirin û rewşa dawî ji aliyê herdû serokwezîran ve hat nirxandin. Hat ragihandin ku di civînê de wekî din rewşa ku niha li Iraqê mayînde ye hat rojevê û ji bo ku Tirkiye û Kurdistan ji meseleyê kêmtir zirarê bibîne, hin rê û rêbaz hatin axaftin.

Ji berk u di şande ya Kurdistanê de wezîrê enerjiyê jî cîh digire û civîn bi beşdariya Wezîrê Enerjiyê yê Tirkiye pêk hat, ayan e ku mijara firotina nefta Kurdistanê jî di rojevê de bû. Herwekî din cara yekem Waliyê Kerkûkê Necmedîn Kerîm jî di nava şandeke Kurdistanê de bi avayekî fermî cîh digire û seredana welatekî dike

Seredana şanda başûr hevdem e û digel axaftina Aştî Hewramî ya ji ajansa Ruyterzê re; dê hewldan pêk bên k udi dawiya sala bê de asta şandina nefta Kurdistanê bigihêje milyonek ermîl ku di navde nefta Kerkûkê jî hebe.

# Serkewtişê ciniyêk



ROŞAN LEZGÎN

**Sosret û serebutê tehlî, ezîyet û cefa, eke merdimî nêkişê hîna pêt û xurt kenê. La bi o şert ke merdim xo nêkero mubtelayê dejî. Ganî çimê merdimî tim dej ra reyayîş de bo.**



Ez wendişê nuşteyanê bîyagrofîkan ra zaf hes kena. Bitaybetî hîkayeyê bîyografîkî yê serkewtişî tim bala mi ancenê; kesê ke qîmê xo bi cuya hazire nêanê, zor danê şertanê xo, palikanê nêrdewana cuye ro tim acor şinê, mi rê zaf balkêş yenê.
Heyat zaf zor o; cuye zafane bi dej de-kerde ya. La vera dej û keder û izdirabî de zewqê mucadeleyî hîna weş o. Dinya de helbet însanê zaf başî estê la xirabî zî zaf zaf estê. Esas zereyê merdimî de hîsê başîye û xirabîye hertim hereket de yê. Haletê ruhîyeyê merdimî tim vurîyayîş de yo. Ge-ge merdim bi xo hem baş hem xirab beno, hem zalim hem mezlum beno. Mesela, yew camêrd beno ke vera hêzê serdestê xo de mezlum bo la eynî wext de keye de vera ciniya xo de zalim bo. Merdim çiqas xo bipawo û bela ra dûrî vindero zî heyat de her wext mumkin o ke yew sosret bêro merdimî sere de. La çîyo muhîm, ganî merdim îradeyê xo, hêvîya xo vîndî nêkero. Îrade û hêvî çîyê sabitî nîyê. Hetêk ra karakter û mîzacê merdimî yê şexsî ra girêdaye yê, hetêk ra zî şert û zurûfanê heyatî û derûdorî ra girêdaye yê. Mi zaf merdimî dîyê ke netîceyê sosretêk de îradeyê xo kerdo vîndî û hêvîya xo cuye ra birnaya. La bi çend vatişanê weşan, bi paştgirî û destekê însananê başan, bi eleqeyêkê germinî verî ra hîna xurtêr dest bi ciwîyayîşî kerdo û hîna saxlemêr gamê xo eştê. Yanî sosret û serebutê tehlî, ezîyet û cefa, eke merdimî nêkişê hîna pêt û xurt kenê. La bi o şert ke merdim xo nêkero mubtelayê dejî. Ganî çimê merdimî tim dej ra reyayîş de bo.
Ez wazena nika behsê yew hîkayeya dejine ke peynîya xo de serkewtiş esto bikî. Rewna ez çapemenîye ra pêhesîyabîya ke 2002 de, Mêrdîn de yew keyneka nameyê xo N. Ç. ke hîrês (13) serrî ya, hetê 26 kesan ra îstîsmar bîya. Di cinîyê ke karê fuhûşî kenê, yanî cinîyan bazar kenê, na tuteka masume pêşkêşê camêrdan kerda. Kesê ke na keyneke de pîya bîyê, mîyanê nînan de yew serwanê (yüzbaşı) artêşa tirkan, mudirê karê nuşteyan yê qaymeqamîye, weznedarê banka, serekê odaya zîraetî, gelêk memurê ke dayreyanê cîya-cîyayan yê dewlete de xebitîyenê, memurê beledîye, cagirewtoxê mudirê mekteban yanî malimî, teknîsyenî, operatorî, esnafî, muxtar û cehşê cerdevanî estê. Nê kesê ke destdergîya na keyneka qijkeka masume kerda zafê xo yan rasetrast merdimê dewlete yan zî kesê zeîfê bêkarakterî ke dusyayê dewlete ra yê.
Meselayê tacîz û tecawuzî seraserê tarîxî de mîyanê heme miletan û welatan de bîyê. La welatê ma de, Kurdistan de, hîna zaf hetê karbidestanê dewlete ra bîyê. Nê vîst-hîris serranê peyênan de, demeyê şerê qirêjî de bîyenê winasî zaf virazîyayî. Qismêkê înan eşkera bîyî, vejîyayî mey-dan. La mi gore se ra neway û newê nê hawa bîyenan tarîtîye de mendî.
Cinî û keynayê ke hetê polîs yan eskeran ra tepişîyayne, se ra newayê înan maruzê tecawuzî bîyêne. La seba ke hetê şarî ra lekedar nêbê, çîyo ke ameyo înan sere de nimitêne, cesaret nêkerdêne ke nê bîyenan eşkera bikerê yan zî bidê mehke-ma. Yew sedemo muhîm zî no yo ke şarê ma mehkemeyanê tirkan ra, edaletê înan ra bawer nêkeno. Eynî seke dewaya N. Ç. de bî.
Badê ke meselaya N. Ç. rayapêroyî rê eşkera bîye, derheqê tecawuz-karan de mehkeme de dewa abîye la cezaya ke ameye dayîş bi sedemê ke “rizaya keyneke estbîya”, “ferqê çîyan de bîya” û “halê baş yê meznunan” ver cezayêka zaf şenike dîyaye.
Keyeyê N. Ç. feqîr ê, îmkanê xo kêmî yê. Coka dewlete 2003 de Yurdê Weyekerdişê Keynayan yê Adena de ca danê aye. La N. Ç. demeyêk badê, yurt ra remena şina Îstanbul verê avûkat Eren Keskîn û yew cinîya aktîvista heqanê merdiman. Ê zî aye rê wayîrîye kenê. N. Ç. verê înan de dest bi wendişê lîse kena, teber ra kewena îmtîhanan, şina kursê îngilîzkî.
Seba ke çapemenîye zî meselaya aye reyde eleqedar bena, derheqê aye de, derheqê dewaya aye de hertim xeberî vejîyenê coka psîkolojîyê aye o xeripna-ye hîna zaf xeripîyeno. Çend psîkologan het tedawî bena. Heta yew psîkolojoga aye nêeşkena zêde binê barê mesela ra vejîyo, a bi xo zî ardimê psîkolojîkî gêna. Labelê N. Ç. wanena, derheqê ameyeyê xo de xeyalan kena. Wazena huqûq yan zî rojnamegerî biwano, heta wazena ke fîlmanê dokumenterî yê derheqê tutanê mexduran de bianco.
Helbet ardimê psîkologan, paştgirîya merdimanê başan zaf muhîm a. La mi gore dermanê travma ra xelisîyayîşî îradeyê merdimî bi xo yo. Ganî merdim bi xo biwazo baş bo, rojanê serkewteyan xeyal bikero. Û model zî zaf muhîm o. Ez vana N. Ç. zerrî ra waşto ke baş bibo û seba ke nêzdîyê Eren xanime de ciwîyaya, coka şeklê cuya aye, karakterê aye nêzdî ra dîyê û xo rê a sey model dîya. Coka tîya ra çend serrî verê cû yew roportajê xo de vato ez wazena bibî avûkate. Axir emser îmtîhanê unîversîte de ser kewena û fakulteya huqûqî qezenc kena.
Ez vana N. Ç. îmtîhanê tewr zehmetî, yanî îmtîhanê heyatî de ser kewta. Belkî a yew domanîya normale nêciwîyaye, sey hemserranê xo ciwanîya xo zî nêciwîyaye. La aye mîyanê dej, keder û binkewtişê cuye de xeyal kerd, xeyalê rojanê başan kerd; aye serkew-tiş xeyal kerd. Vera zor û zehmetîyê cuye de vileyê xo çewt nêkerd; aye dej û keder û tehlîya cuye ra rojê rindekî ditî.
Ez bawer kena ke a do unîversîte zî biserkewtiş biqedîno. Çunke a êdî zana ke her çî bi xebate, bi ezm, bi sebr û sebat û helbet bi xeyalkerdişê rojanê rindekan beno.
N. Ç. nika 21 serrî ya. Înşalah a do 25 serrîya xo de sey yew avûkata ciwane dest bi cuya xo ya meslekî bikero. Senî ke Eren xanime û a xanima bîne aye rê sîneyê xo akerd, wayîrîya aye kerde, ez bawer a ke N. Ç. zî do winî gelek kesanê mexduran rê wayîrîye bikero. Êdî hîkayeya N. Ç. hîkayeyêka zerrîsotîye, hîkayeyêka rezîlîye nîya, ney! Ê a wayîrê yew hîkayeya serkewtişî ya.
Ez zerrî ra N. Ç. pîroz kena. Ez hêvîdar a ke rayîrê aye tim akerde bo, herinda ê rojanê tehl û tengan de rojê zaf rindekî vernîya aye de bê. Ez Eren xanime û a xanima bîne zî zerrî ra



# Merasîmê mezunîyetî yê malimîya kirdkî

Emser Unîversîteya Artûklû ra 310 kurmanckî 90 kirdkî ra 400 wendekarê lîsansê bêtezî, yanî malimê kurdkî mezun bîyî. Roja 20.06.2014 de salona konferansî ya unîversîte de bi beşdarîya gelêk meymaman merasîmê mezunîyetî virazîya. Merasîm de rektorê Unîversîte Prof. Dr. Serdar Bedîî Omay, cagirewtoxê rektorî û serekê beşê Kurdolojî Prof. Qedrî Yildirim, serekê beledîyeya bajarê girdî yê Mêrdînî Ehmed Turk û nameyê wendekaran ser o zî Özlem Akkan qisey kerd. Badê merasîmî dengbêj Metîn Barlık, hunermend Mirady û Gulistan Perwer muzîk pêşkêş kerd.

Metnê qiseykerdişê wendekarên wina yo

"Nameyê wendekaranê beşê kurdkî ser o şima rê rêz û silamî

Mêmanê birêzî! Mamostayê erjayeyî! Embazê delalî!

Ma pêro weş zanê ke seba ke ma bişêyî behsê kultur, huner û edebîyatê miletêk bikî, verê heme çî ganî ziwanê ê miletî estbo. Reyna ma weş pê zanî ke virazîyayene û averşîyena şexsîyetê merdiman de ziwan wayîrê rolêkê çiqas girdî yo. Nika ma nêwazenê tîya sereyê şima bi nê melumatî bidejnî. Ma do bi kilm û kurdkî vajî.

Ewro, nê welatî de, sazgehêka akademîke de, bi seyan wendekarê beşê ziwanê kurdkî mezun benê. Ancî ma baş zanî ke bi temambîyena nê bernameyî karê ma nêqedîyayo û nêqedîno. Bi eksê ney, barê milê ma hîna giran beno.



Wendekarên Unîversîteya Artûklû

Gelo verê ma çi hêvî kerd û dima ma çi dî? E, raşt a, ma ra zafînî bi eşq û şewqêkê girdî, bi coş û meraqêkê vêşî muracatê nê programî kerd. Bêguman hetê ekonomî ra zafê ma biendîşe bî. Ez bawer kena ke ma ra zafîne hêvî nêkerdêne ke do tîya bernameyêko wina pirr, kadroyê wina hemaheng û pisporî estbê. Labelê roj bi roje asayênê ke warê kurdnasî de tîya çend aver o. Rastiko ez nameyê xo ser o vaja, eza ke mi xo warê ziwan û edebîyatê kurdkî de hende aver hesibnayne, mi fehm kerd ke ez çiqas nezan a û kêmaneyê mi estê.

Herçiqas warê îlmî de sînor çin bo zî, yanî merdim nêşêno bibo zanayeyêko bêkemane zî, ewro ez bi asanî şêna vaja ke eke warê kurdkî de ez zanayeyêka bêkemane nêba zî êdî ez sey verê nezan nîya. Û seba naye ra zî ez zaf îftîxar kena.




Helbet no çî xovero nêvirazîya. Ez vernî de rektorê unîversîte birêz Prof. Serdar Bedîî Omayî rê zaf sipas kena. Eke rêberîya ey nêbîyêne, ne no beş awan bîyêne û ne zî no kadro tîya kom bîyêne.

Reyna gelekî sipas mamostayê ma Prof. Kadrî Yildirimî rê. Eke ferasetê ey nêbîyêne belkî ewro ma tîya merasîmêko winasî nêkerdêne.

Îcab nêkeno ke ma nameyê mamostayan yew bi yew bihûmarî labelê xora nameyê înan caran vîr ra nêşino. Înan hem ufûqê ma yo fikrî hera kerd hem zî bi tevgeranê xo yê merdimane bîy nimûne. Xeyrê înan ra tîpê akademîsyenê serdin û cemidîyayeyî ke sereyê ma de bî, vurîya.

Êdî ne sey wendekaran la sey mamostayanê kurdkî çend waştişê ma estê: 1)Ganî kurdkî çarçewaya dersêka weçînaya de nêro dayene la çarçewaya perwerdeyê ziwanê dayîke de bêro dayene.

2)Ganî wendegehan de ma sey kadroyî tayîn bibîn. Çunke ma bêstatubîyene çi rey qebul nêkenê.

Reyna, huzurê şima de, çi îdarî çi akademîk, ma heme kedkaranê unîversîte rê û bitaybetî beşê kurdkî re sipas kenê.

Weşîye de bimanîn. Selam û rêz.

# Pêşmergeyên jin li bereya şer in

Pêşmergeyên jin ên Kurdistanê amadekariya ku li hember milîtanên Dewleta Îslamê ya Şam û Iraqê (DAIŞ) şer bikin gihandin asta dawî û ji bo qeywirê amade ne. Pêşmergeyên jin ên ku li bajaroka Tazexûrmatû û gundê Beşîrê bi DAIŞ'ê re şer kirin, niha jî rêwiyên Xaneqîn û eniyên din in.
500 pêşmergeyên jin ên di yekîneya taybet de ya girêdayî "Alaya duyemîn" a li bajarê Silêmaniyê, di van rojên ku Iraq ber bi şerekî navxweyî ve diçe de, perwerdahiyeke xurt dibînin.
Pêşmergeyên jin wekî pêşmergeyên mêr perwerdeyê dibinin û dikarin ku gelek çekên wek topên hewanê, roketavêj, tifengên bi makîne û keleşê bi kar bînin. Her wiha perwerdeyên wekî pêşketina di eraziyên diijwar de, ketina nav herêma dijmin, keşfkirin, tetbîqkirina azîneyên kemînê, li hember şertên fizikî û derunî yên şertên şer li ber xwe dayînê, dibînin. Temenê pêşmergeyên jin di navbera 18 û 45an de ne û pêşmergeyên jin xwe xweşik jî dikin. Pêşmergeyên jin bi gûstîlên xwe, oje, xizim û guharên xwe balê dikşînin ser xwe.

**"Em amade ne ku di hemû şertan de li her derê şer bikin"**

Fermandara Yekîneya Pêşmergeyên Jin Nahîde Ehmedê daxuyaniyek da û diyar kir ki ew amade ne ku biçin hemû eniyên ku hewceyî heye û got "Em amade ne ku di hemû şertan de li her derê şer bikin." Ehmed got ku em dikarin hemû çekên giran bi kar bînin û me perwerdeyeke wisa dît ku em dikarin di hemû şerê giran de cî bigirin. Ehmed qal kir ku wek pêşmergeyên jin car carna di cihên şerên çekdarî de jî peywirdar dibin û wiha axivî: "Me herî dawî li Tazexûrmatûya bajaroka Kerkûkê û gundê Beşîrê bi milîtanên DAIŞ'ê re şer kir. Niha jî bangî me kirin ku em biçin Xaneqîna ku wir pevçûnên bi DAIŞ'ê re berdewam dikin. Em ji bo parastina herêmê amade ne ku her cure fedakariyê bikin."
Ji pêşmergeyên jin Hewa Newzad jî got ku min di 15 saliya xwe de dev ji dibistanê berda û biryar da ku bibim pêşmerge û wiha axivî: "Ez di 18 saliya xwe de bûm pêşmerge. Min xwest di şûna ku li ser maseyan bixebitim, wekî pêşmergeyên mêr xizmeta aktîf bikim. Ez dikarim di eniyan de şer bikim. Li kû hewceyî hebe, dikarim biçim wir û şer bikim."
Newzad got ku ew haj bi dijawriya karê ku em dikin hene û wiha axivî: "Li herêma me ji bo gelek kesan çekgirtina jinan balkêş tê. Ez zewicî me. Jinên ku dibin mamoste, hakim, dozger an jî bijîşk çawa malbatekê ava dikin, em jî bi heman awayî hem li malê hem jî bi hev re peywira xwe bi cî tînin. Heke zarokên min çêbin ez amade me ku peywira xwe ya dayiktiyê jî bi cî bînim. Jinek hem dikare bibe pêşmerge hem jî dikare bibe dayik."
Yekîneya taybet a ku ji jinan pêk tê, di çarçoveya daxwaza birêvebirên partiya Serokomarê Iraqê Celal Talabanî Partiya Yekîtiya Niştimanî ya Kurdistan (YNK) di 11ê sermaweza 1996'an de hat avakirin. Wê heyamê jimara pêşmergeyên jin 16 bû lê niha gihiştiye 500 kesî.







# Pêşmergeyên kevn amade ne!



Pêşmergeyên kevn

Pêşmergeyên berê ku bi avayekî li Bakûr bi cih bûne, li Colemergê di daweteke de hatin ba hev û li ser rewşa Kurdistanê ku li hember talûkeya DAIŞ'ê amadekariya şer dike nîqaş kirin û peyama; "Em bi her avayî amade ne ji bo şerkirinê" dan. Pêşmergeyên berê dan zanîn ku Mesûd Barzanî gazî wan bike ew ji bo vê yekê her amade ne.
Pêşmergeyên li Herêma Kurdistanê teqawîd bûnê lê ji ber ku xwedî du peseportan in li Colemergê bi cih bûne, daxwaza Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî bi bîr anîn û gotin: "Eger Mesûd Barzanî gazî me bike emê yekser vê daxwazê bi cih bînin û em bo vê yekê her amade ne."
Serokê Pinyaşîniyan Orhan Pirozbeyoglu, Serokê Nerveyîyan Muhsin Nereveyi û bi sedan kes beşdarî dawetê bûn herwiha di vê daweta qerebalix de wêneyê Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî li cihê ku zava lê rûdinişt hate daliqandin.
Pêşmergeyê berê Arîf Kaplan bi kurmancî axaftinek kir û got: "Armanca DAIŞ'ê dagirkirina Kerkûkê bû lê Pêşmerge yekser ketin şer û destûr nedan vê yekê. Qeyrana Irak'ê berdewam e.
Li navend û navçeyên Colemergê nêzî hezar Pêşmergeyên berê yên bitecrûbe li hev civiyane, eger gazî me bikin emê vê daxwazê yekser bînin cih."

# Petrol tenê têrî serxwebûnê nake


RAWÎN STÊRK

Her çiqas bi destpêkirina êrişên DAIŞ'ê bidestxistina hin heremên Iraqê ve mijara petrola Kurdistanê ji rojevê derketib jî, li holê ye ku hemû şer, gengêşî û aloziyên ku li Rojhilata Navîn radibin, li ser neftê ye û xuyaye ku şerê nefte dê heya ku cîhan heye bibe sedema gelek şer û aloziyan. Firotina nefta Kurdistanê, li gor pisporan rê li serbixwebûnê vedike û kurd wek aktorekî nû li herêmê rû didin. Ji bo vê nîqaşên di heman mijarê de li cîhanê didomin. Li gor Dr. Serdar Azîz, her çiqas ku neft û firotina wê pir girîngbe jî, bi tena sere xwe neft têrî serbixwebûnê nake û divê aboriya bêş bi bêş bê avakirin.



**Dr. Serdar Azîz berendamê parlementer yê Tevgera Goran ku li Zanîngeha Cork doktora ya xwe kuta kiriye û niha li Zanîngeha Silêmanî wek mamoste peywirdar e di çarçoveya firotina neftê, dijberiya Emerîka, têkiliyên di navbera Kurdistan û Hukumeta Iraqê de dîtbariyên xwe bi rojnameya me re parvekir. Li gor wî Emerîka nikare demek dirêj dijberiya firotina nefta Kurdistanê bike û sedema li dijbûna hina, talûkeya parçebûna Iraqê ye.**

**Rêvebiriya Kurdistanê dibêje 'Emê êdî petrola xwe bi xwe bifroşin' ev tê çi wateyê ji bo Kurdistanê ku rêvebiriya Kurdistanê petrola xwe bi xwe bifroşe?**

Ev yek hinekî serbixweyî ya aborî nişan dide ji aliyekî ve, û ji aliyekî din ve wateya serbixweyî ya siyasî dide ji ber ku dema ji aliyê aborî ve şiyanên te di destê te de bin tu dikarî biryara siyasî jî bistînî bi taybetî dema ku Hewlêr û Bexda di kirîzeke wiha mezin re derbas dibin ku heta niha çareserî ne xuyaye û di dema dawiyê de em dibînin ku Iraq ber wê yekê ve diçe ku hikumeta wê nikare kar bike û bûye hikumeteke şikestî. Ev hemû palderin ku kurd bibin xwudanê yan di xema wê yekê debe ku samanên xwe bikarbîne, ev sedemin. Sedemên din jî ew in ku niha kompaniyên neftê dixwazin neftê bifroşin çûnkî li gor ew girêbestên ku hene ew hatine Kurdistanê neftê derxin û bifroşin û Hukumeta Iraqê rê nade ew neftê bifroşin û kirêza neftê gehiştiye wê astê ku tevlihevî çêbibe ji ber birîna mûçeyên welatiyan û xelkê Kurdistanê li hêviya wê ye ku dahatê aborî di destê kurdan de be, ev hemû sedem in.

**Ev petrol bi rêya Turkiyê re tê firotin, têkiliya bi Tirkiyê re çi derfetê derdixe?**

Ji aliyekî ve ev nêzîkbûna Kurdistan û Tirkiyê baş e, lê ji aliyekî din ve renge bibe sedemê ku Tirkiye hewilê bide ku Kurdistanê têke jêr kontrola xwe, ev metirsîne ji aliyekî ve baş e û ji aliyekî ve metirsiye ku zêdetir û zêdetir Tirkiye bixwaze neft û gaza Kurdistanê ji xwe re peyda bike û bibe sedem ku Kurdistan bi curekî ji curan di bin destê wan de be. Ev herdu alî jî rengê rastî bin lê renge jî mebesta Tirkiyê zêdetir aborî be ku kalayên xwe bifroşin û pereyên Kurdistanê ber bi xwe ve bikşîne û di heman dem de mifayê ji nefta Kurdistanê bibîne bi rêya kompaniyên li Tirkiyê bi rêya veguhestin yan ambarkirin û pere hilgirtina di bankên Turkiyayê de. Ev hemû sedemin, Tirkiye ji aliyê bazar û aliye aborî û siyasî û herwiha ewlehiya wizeyê (enerjî) ve mifadar be ji nefta herêmê. Kurd jî ji vî alî ve gerek lê bigerin ku ne tenê deriyekî bibînin ku neftê tê re bifroşin ango zêdetir hizir di wê yekê de bikin ka çawa destkeftên siyasî zêdetir bikin daku mana wan li navçeyê were misoger kirin.

**Ji bilî Turkiyê rêyek din heye ku petrola Kurdistanê tê re derkeve bazara cîhanê?**

Di rêya Iranê re jî neft tê şandin, lê bi şêweyekî kêmtir wate di boriyan re naçe lê ji aliye lojistîkî ve renge Tirkiye baştir be ji ber ku nêzîke ji benderê deryayê. Herwiha borî jî heye ev sedem dikin ku di rêya Turkiyê re baştir be bi taybet ku Îran di jêr sizayan de ye û ev jî dike ku şansê Iranê ji ya Tirkiye kêmtir be di firotina neftê de lê li aliyê Iranê jî çêdibe ku borî were kişandin daku Iran jî mifadar be ji firotina nefta herêmê

**Pirsa têkiliyên Hukumeta Iraqê û ya Herêma Kurdistanê li ser firotina neftê wê bikeve çi astê?**

Hukumeta Iraqê dixwaze Iraq hemû di bin kontrola wê de be. Dixwaze Iraq yek perçe be û Iraq welatekî navendî be. Lewra Hukumeta Iraqê li dijî firotina nefta Kurdistanê ye, lê renge wek dîfakto Iraq bibe perçe perçe û çi buha ji bo biryarên wê nemînin li ser Kurdistanê di derbarê neftê de bi taybet niha Iraq ji aliye serbazî ve hebûna wê nemaye li navçeyê renge em ber bi paşerojeke cuda ve herin lewra gereke Iraq mejiyê xwe bigohêre ji ber ku serdema navendîbûna deshelatê nemaye lê em niha di qonaxeke pir hestyar de ne em nizanin ber bi ku ve diçe.

**Amerîka çima naxwaze petrola Kurdistanê were firotin?**

Emerîka ji hilweşandina Iraqê ditirse, Emerîka naxwaze Iraq hilweşe û dixwaze Iraq bimîne û ditirse ku Kurdistan neftê bifroşe di encamê de Iraq hilweşe û bi dawî bibe, Heger Iraq bi dawî bû ditirse hevsengiya hêzê li Rojhilata Navîn nemîne û bibe sedem ku Tirkiye bi hêz bibe û Iran bi hêz bibe û Seûdiye ditirse lê ez hest dikim ku Emerîka ji dil ne dijî firotina nefta Iraqê ye.

**Firotina petrole ji bo serxwebûnê tê çi wateyê?**

Ji bo serxwebûna Kurdistanê ev gaveke mezine ku kurd xwudanê samanên xwe be lê serxwebûna Kurdistanê pir jê re gereke û karekî mezin dixwaz e, Pêwîstiya wê bi wê yekê heye ku hukumet bingehê xwe çêke, Navxweya xwe rêkbixîne û aboriyeke beş beş peydabike, ne tene neft û têkiliyên baş hebe bi welatên navçeyê re bi taybet bi Iran û Turkiyê re bi rengekî ku ew dijatiyê nekin. Renge di demek dirêj de Emerîka helwêsta xwe biguhêre çûnkî jê re zelal dibe ku Iraq nikare bi vî şêweyî bimîne lewra neçarin bi kêmanî bikin sê perçe.

**Tevî dijberiya Amerîka û Hikumeta Iraqê, gelo wê nefta Kurdistanê bê firotin di demek dirêj de?**

Ez hest dikim Emerîka di dema dirêj de dijatiyê nake, niha dijatiyê dike ji ber ku dixwaze Iraq bimîne û wek yek welat bimîne lê heger Iraq wek dîfakto perçe perçe bibe, Emerîka neçare danpêdanê bike.

**Gelo Amerîka wê serxwabûna Kurdistanê bipejirîne?**

Ez nizanim serxwebûna Kurdistanê wê çawa be. Kurd dixwaze konfidral bin yan Iraq bi xwe wê bi dawî bibe, heger Iraq bi dawî bibe Kurd wê serbixwebin û Emerîka wê danpêdanê pê bike wek dîfakto.

**Hûn wek pisporekî mijarê; rewşa têkiliyên di navbera Tirkey û Kurdistanê de çawa dinirxînin?**

Bi taybetî ji bo asta têkiliyan hin dudiliyên me hene. Em ne li dij têkiliyên herdû aliyan in. Di warê aborî, enerjî û hin mijarên din de tû xemdariyên me nîn in û têkiliyên bi Tirkiye re kêfxweş in. Lê em dixwazin ku hemû têkiliyên bi dewletên derdorê re bi avayî vekirî, aram û zelalbin. Divê Tirkiye jî di warê têkilî û hevkêşeya Rojhilata Navîn de ne di bin bandorkirina rewşeke neerînî de be. Divê ji bo hemû hevkêşiyan nazikiyekê debe. Divê têkiliyên xwe yên bi dewletên herêmê re li ser zemînek saxlem bide rûniştandin. Divê ne di nêrîna wek xandan û împaratoriyan de be. Divê wek mêtingehan ne di nêzikahiyek ku li heremê metingehek nû avabike de be. Di di têkiliya di navbera Tirkiye û Kurdistanê de du xal her tim li ber çavan bên girtin. Ya yekem, têkiliyeke aştiyane ye. Ya duyem têkiliyeke ku her tim xwe nû bike û veguhezîne. Divê wekî din jî têkilî vekirî be ji mixalefet û derdorên bilî hukumetan re. Heke ku têkiliyeke demdirêj û saxlem tê xwestin, divê ev xal neyên ji bîrkirin û têkîlî li ser van mihengan bê rûniştandin.

# Çaresarî di pakêta nû de ye?

Hukumeta Tirkiye di çarçoveya pêvajo ya çareseriya pirsgirêka kurd de pakêtek nû amade kir û çavlirê ye ku nava çend rojan de li parlementoyê bê rojevê. Hukumetê piştî nîqaşên ku li gel Ocalan û HDP'ê heta niha hatine kirin paketek ku ji 7 bendan pêk tê amade kir û beriya ku parlemento di bikeve betlanê şand û dê di çend rojan de li ser nîqaş bêne kirin.
Paketa ku bi tesdîqkirina Erdoğan ji parlementoyê re hate şandin çavlirê ye ku rê li çareserkirina pirsgirêkê re veke da ku vegera PKK'yîyan jî di nav de, ji hin benden ku heta niha qet nebûne cihê nîqaş û nirxandinê.
Di naveroka vê xebatê de bêyî rê vekirina vegera PKK'yî yên ku di nava rêveberiyê de cih negirtine, zarokên ku çûnê çiyê û beşdarî pêvçûnan nebûne, meseleya girtiyên nexweş û ewlehiya aktorên ku rêveberiya pêvajoyê dikin jî baldar in. Li gor vê, di nav de Ocalan û HDP'yî jî heyî, kesên ku niha xebata pêvajoyê dimeşînin bi avayekî qanûnî dê bêne parastin ku di dahatuyê de ji bo vê xebatê weke sucdar neyên hesibandin
Di paketa ku amadekariya wê qediya ye de Şartname ya Xweseriyê ya Rêveberiyên Heremî ya Ewropa ku HDP daxwaza qebûlkirinê dikir jî cih digire. Ji bo endamên PKK'ê ku vegerin jî di warî rehabîlîtasyonê de wên hin hazirî bên kirin û biryar bêne girtin. Pakêta ku di nava raya giştî de dibe sedema hêviyek çareseriyê demek dirêj e ku di rojevê de ye lê heta niha ne diyarbû ku wê kêngê derkevê. Lê belê bi biryara Erdoğan lez lê hate dayîn û betlanê parlementoyê hate taloqkirin da ku paket bi lezgînî li parlementoyê bê qebûlkirin û qanûn bêne guhertin.



**Paket girîng e lê kêm e**
Serokê Baro ya Şirnexê Nuşirevan Elçî li ser pakêtê bi rojname ya me re axivî û anî ziman ku temînata ji bo kesên ku ji bo pêvajoyê di nava xebatê de ne tiştekî pir girîng e û heya ku pisrgirêk bi temamî çareser nebe, vegera endamên rêxistinê ne mimkun e. Elçî wiha domkir, "Çavlirêbûna ku bi rêya vê pakete PKK ji çiyê dakeve jêr ne mimkun e. Ev pakêt ji bo çareseriyê girîng e lê naveroka wê qels e. Heke ku astengiyên li ber perwerdahiya zimanê zikmakî bêne rakirin û pêkanînên li girtîgeha yên antî domakratîk bi dawî bibin ev pêşveçûnek girîng e. Bi taybetî jî mijara girtiyên nexweş hem ji warê însanî û hem jî di warê hiqûqî de watedar e. Ez gavên ku hukumet davêje watedar dibînim."

**Ji bo bi hev bawerkirina herdû aliyan girîng e**
Wezîr û parlementerê berê Mehmet Bekaroğlu jî diyarkir ku di pakêtê de du bendên girîng hene ku yek ewlehiya aktorên pêvajoyê ye û ya din jî guherînên ji bo vegerê ne û wiha pê de çû; "Bi tena sere xwe ew herdû bend pêvajoyê digihînin asteke hêsantir. Ez di baweriya ku êdî gavên baştir dê bêne avitin de me. Helbet di rojên pêş de wê zelal bibe lê em nikarin bibêjin ku wê bibe çareseriya her tiştî. Ji bo ku pêvajo bi cih bibe divê ji makezagonê bê destpêkirin û guherînên pir kûr û girîng pêk bên. Mijara girtiyên nexweş pir girîng e ku di naverokê de ye. Pakêt helbet girîng û pir baş e lê meseleya kurdan tenê bi vê çareser nabe. Divê ev nebe hêvîdariya ku wê her tişt biguhire. Lê ji bo ku tesîsbûna baweriya herdû aliyan wê gelek sûd jê bê girtin."

---

# Li Rojava mafên mirova tên binpêkirin

Rêkxirawa Navnetevî û Insanî "Human Rights Watch-HRW" di derbarê rewşa mafê mirovan a li Rojava dê raporek berfireh amade kir û ji raya giştî re aşkere kir. Rapor bi giştî, serdan û raçavkirinên HRW ê li rojava bingeh digire û şêweyê rêvebirina herêmê ji aliyê PYD ê, karûxebata teşkîlata polîsî, qonax û awayê dadgehkirinê û rewşa zindanan, ronî dike.
Rapor, balê dikşîne ser helwest û kirinên neyênî û polîsên herêmê, ji ber girtin û binçavkirinên kêfî, beyî îcazeya dozger gera li cî û malan, zexta li ser muxalîfên PYD ê û binçavkirina wan, kêmcidîyeta ji bo peydekirina sûcdarên kuştin û windakirinê, rexne dike.
Raçavkirinên HRW ê, di "qonaxa girtin û dadgehkirinê" de kêmasiyên heyî eşkere dike û pêşniyarên xwe dihêne zimên. Li gor raporê divê pêwîst e ku dadgehkirineke adilane be û "mafê parêzer û hevdîtina girtiyan" li ber çavan bê girtin. Girtî demek dirêj di bin çavan de nemînin. "Îtîraf" anjî "bêbexti" weke belge û dokument, ji aliyê polîs û dadgehan ve neyên bikaranîn.



Ji xalên raporê yên balkeş yek jî ev e ku di girtîgeh û hepsan de, muameleyên xirap li girtiyan têne kirin, lêdan û kûştin pêk tê, li dijî xebatkarên sîstemê, angu wezifedarên fermî ku muameleyên xirap, îşkencê û kûştinê dikin, lêpirsîn nayê destpêkirin.
Di raporê xwestêkên HRW'ê jî wiha cîh girt: PYD dikare rê li ber kirinên bêhiqûqî; girtinên kêfî, tirsandina muxalefeta xwe, girtin û zexta li ser wan, lêdan û kûştinên di girtîgeh û zindanan de, bigire. Nehêle zarok tevlî artêşê bibin. Xwepêşandanên xelkê ku îdarekirina saziyên fermî li herêmê rexne dikin, cidî bigire, êrîş neçe ser wan û mirov neyên kûştin. Mafê gelên din, mîna Suryaniyan û hwd bêhtir bê parastin. Dema PYD pirsa mafê mirovan li herêmê cidî negire û rê li ber xeletiyan negire, nikare xwe ji gunehên pêk tên bişo û pak nîşan bide.

# Dayîk li benda zarokên xwe ne


Dayîk li Amedê li çalakiyê de

Çalakiyên malbatên ku zarokên wan çûne çiyê, yên herdû aliyan her diçî firehtir dibe û berdewam dike. Li Amedê dayîkên zarokên li çiyê hatin ba hev û bi daxwaza ku hukumet gavan biavêje dest bi çalakiyê kiribûn û ev çalakî didomê. Li aliyê din jî malbatên ku bi îddiaya ku zarokên wan hatine revandin li Enqere'yê bi Erdoğan, Gül û Şahîn re hatin ba hev.
Endamên Meclisa Dayikên Aştiyê yên ku zarokên wan di nav PKK'ê de ne, li Parka Anit ya li hember Walîtiya Amedê çalakiya rûniştinê ya bêdem dabûn destpêkirin û ev çalakî hê jî didome. Dayikan xwestin ku ji bo çareseriya pirsgirêka kurd di pêvajoya ku ji aliyê Rêberê PKK'ê Abdullah Ocalan hatiye destpêkirin qanûn bên derxistin.
Li aliyê din li Enqere'yê jî Serokwezîr Recep Tayyîp Erdogan bi malbatên ku zarokên wan bi îddiaya ku ji aliyê PKK'ê ve hatine revandin re hat ba hev. Hevdîtin li Navenda Giştî ya AK Partiyê ji çapemeniyê re girtî hat kirin û bêyî Erdogan, Wezîra Polîtîkayên Civakî û Malbatê Ayşenur Îslam, Wezîrê Xurek, Çandinî û Heywandariyê Mehdî Eker, Seroka Şaxa Jinan a AK Partiyê Gurdal Akşît û parlementerên AK Partiyê yên Diyarbekirê û Beşir Atalay hazir bûn. Di civînê de malbatan daxwaza ku zarokên wan bo bi şûnde bêne gav bêne avêtin kir.
Hevdîtin bi qasî 3 saet û nîvan berdewam kir. Erhan Eren piştî hevdîtinê li ser navê malbatan daxuyanî dan rojnamevanan û got ku Serokwezîr Erdoğan yek bi yek guh da her kesê û notên xwe girtin. Eren da zanîn ku Erdoğan gotinên ku dilê dayîkan rihet dike aniye ziman û got ku me di rûyê Erdoğan de pêngevên ji bo çareserkirina pirsgirêkê dîtin.
Adîle Aksoyê jî da zanîn ku Serokwezîr Erdoğan gotiye, "Di derbarê mijarê de li ser qanûneke nû em dixebitin û beriya ku parlmento bikeve betlaneyê dê qanûnê pêşkeş bikin" Aksayê diyar kir ku ev yek di mirovan de hêviyan çêdike.
Piştî Erdoğan balbat vê carê bi Serokkomar Abdullah Gül re hatin ba hev û li ser heman mijarê daxwazên xwe pêşkêşî Gül jî kirin. Dû re jî malbat bi Alîkarê Erdoğan Mahmet Alî Şahin re li hev rûniştin û dîsa di derbarê heman mijarê de nîqaş kirin.

**Ji bo vegera zarokan komele hat damezrandin**

Di vê navberê de li Kocaelî ya Tirkiye, bi minasebeta ku zarokên ku beşdarî PKK'ê bûne bi şûn de bên û li ser vê mijarê xebata bike komeleyek bi navê Komeleya Piştgirî û Şêwirmendiyê ya Zarokên me Bi şûn de Bidin me (ÇOGEV-DER) hat damezrandin. Serokê komeleyê Galip İlhaner da zanîn ku wê di demên pêş de li bajarên din jî şaxên xwe vekin û ji bo zarokên ku beşdarî rêxistinan bûne bi şûn de bên xebatan bikin.


Malbatên li gel Erdoğan



# DAIŞ li Stenbolê ye




Piştî ku aşkere bu ku li Stenbolê hin sazî û komele ji bo piştgirî û berhevkirina çektaran a ji bo DAIŞ'ê dikin, vê carê jî mexezeyek ku wek 'DAIŞ Store' dixebite hate vekirin û herwekî din li cihekî din jî li qadekê standek hat vekirin û bo piştgiriya DAIŞ'ê xebat tê kirin
Cil û bergên bi ala Rêxistina Dewleta Îslamî ya Iraq û Şamê(DAİŞ) li Güngören'a Stenbolê di mexazeyek nû hatî vekirin de têne firotin. Mexazeya bi navê "Lixwekirina Îslamî" ligel tîşortên bi ala DAİŞ'ê cil û bergên li gor şerîetê têne firotin. Di mexazeyê de tenê cil û bergên jinan têne firotin û li derve yê mexazeyê jî meala tirkî ya sûreta Ahzab hatiye daliqandin.
Di mexazeyê de ala DAİŞ'ê jî tê teşîrkirin û wek "mohra pêximber" tê nasîn û firotin. Wekê tê zanîn ala DAİŞ'ê ji mohra pêxember pêk tê û dixwaze ku herkes li gor şêweyên vê bijî.
Maxeze di dema hilbijartinan de wek bûroya Partiya Saadetê hatibû bi kar anîn. Hat zanîn ku dê li çend taxên din yê Stenbolê jî maxazeyên bi vî rengê bêne vekirin.

**Bo piştgiriya DAİŞ'ê li Fatîhê stand hat vekirin**

Li Fatîha Stenbolê jî bo alîkariya rêxistina DAİŞ'ê standek bi navê "navenda berhevkirina alîkariyê" hat vekirin. Di standê de alên rêxistina DAİŞ'ê tê bikaranîn. Hat îdiaakirin ku di bin navê alîkariyê ji bo DAİŞ'ê mîlîtanjî têne berhevkirin.
Li taxa Fatîhê wekî din jî bi dehan saziyên îslamî ku alîkariya rêxistinên bi vî rengî dikin hene û beriya çend mehan li mizgeftên Fatîhê ji bo mîlîtanên li Sûriye û Iraqê miribûn nimêja paşpênî hatibû kirin.
Çend roj berê di çapemeniyê de komaleyek bi navê HÎSADER jî cih girtibû ku ew jî ji bo DAİŞ'ê alikariyê berhev dike û ji bo şer bikin ciwanan bu dixapîne dişîne nav refên DAİŞ'ê.
Ji ber ku li bajarekî wek Stenbolê ew qas sazî, komele û xebat bi avayekî aşkere ji bo rêxistinên cûda têne kirin, êrîşên di vê mijarê de jî car car diqewimin. Li Sitenbolê di hin çalakiyên çepgir an jî kurdan de endamên van saziyan êrîş dikin û tu tedbîr ji bo vê rewşê nayên stendin. Di dawiya dawî de xebatên ku ji bo rêxistinek wek DAİŞ'e ku bi pêkanînên xwe yên li Iraq û Rojava hemû cîhanê dixe nava metirsiyê, li Stenbolê bi derfetên aşkere û bê asteng têne kirin.

# Esmeray: Pîreboka boxçe giran

BÊZAR BÊWAR

Esmeray ku ji kurdên Qers a Serhedê ye piştî ku tê Stenbolê bi nasnameya xwe ya cinsî dixwaze ku xwe bi civakê bide qebûlkirin û di vê rê de jî di wê demê de tiştê ku nehat sere wê namîne. Kurdbûn, transeksuelbûn, welatparêzbûn, jinbûn û mixalîfbûn û bi ser de jî li Tirkiye jiyîn... Esmeray a ku di salên 80 û 90'î de di wê rewşa bi lez a li pişta faşîzmê siwarkirî de ku êdî mirov texmîn dike ku çi bê sere wê, piştî salên 2000'î vê carê jiyana xwe bi lîstikên şanoyê pêşkêşî temaşevanan dike. Dik; nêynika Tirkiye û temaşevan jî civak.

**Ji ber hişk a şîzofrenîk zimanê mirovan jî bêhtir hişk û ji lihevhatinê dûr e. Çêrkirin wek bêşek têkilî ya mirovan bi cih bûye. Tu jî çêra dikî, an jî çêra ku tu herî zêde bi kar tînî çî ye?**

Ez nadim çêra. Nêzî deh sala ne ku min qet çêr nekirine. Çimkî çêr jî şiklekî şîddetê ye û raste rast li hember jinê ye. Ez zêdetir nifiran dikim. Di demên dawî de bi avayekî sistematîk mirin pêk tên, her der ji bo kuştin û mirinan di bin bandoreke giran de ye. Ez ji bo kujêran dibêjim înşallah wê bibin xewnereşk. Her tim vê dibêjim lê min çêr û dijûn ji zaminê xwe qewirandin.

**Li Tirkiye bi avayekî lezdayînî kuştin, şerjêkirin, birîndarkirin û rewşeke bi xof heye. Gelo ev ji aliyê hinan ve têne organîzekirin? Yanê wek ku bi plan be?**

Ji xwe ev tişt her tim hebû lê di demên dawî ku teknolojî bi pêş ket û medya civakî ev qas bi kar hat, ev bûyer bêhtir aşkere dibin û li ber çavan têne raxistin. Bi salane ku li Kurdistanê kuştin û jan diqewime, zarok têne kuştin. Yanê ev mijar ji berê ve di nava civakê de hebû lê aşkere nedibû. Kes pê nedihesiya. Ya rast niha jî bi temamî aşkere nabin û civak pê nahese lê rewş ne baş e. Ji ber ku ev kuştin û rewşa bi xwîn bi avayekî vekirî di çapameniyê de cih digire, mirov di nava panik û qurifînekê de ne lê asta şîddetê her diçe bilind dibe û derdorê ku mixalefetê dikin jî dişibin desthilatan û bi şiklên wan têdikoşin êdî.

**Ev rastî jî dibe sedem ku sîstema ku mirovan dixe vê rewşe demdirêj dike gelo?**

Li cihên ku demokrasî pêş ketiye em cûdakariyekê di mixalefetkirina wan de dibinin lê li Tirkiye tiştek wisa nîn e. Bo mînak, aşkerekirina namzetên serokkomariyê. Partiyek demokrat a civakî li hemberî AKPê namzetekî ku ji yê AKP'ê ne cûda be hildibjêre. Di vê mijarê de jî bi şiklên wan tevdigere. Wekî din jî wêne û agahiyên di derbarê kesên ku têne kuştin de bi avayekî fireh û xelet têne parvekirin û weşandin. Ev jî dibe sedem ku rewş bizivire pornografi ya şîddetê. Ev çi hal e.

**Ev mijar di çapemeniyê de jî zêde zêde fireh û kite bi kite tê weşandin. Zimanê çapemeniyê wisa ye ku di hin nûçeyan de kujêr dibe qehreman û mijar wek çîrokê tê nivîsandin?**

Belê rast e û ew jî çand û nêzikahiyek sîstemê ye. Ev tişt rêbazeke civakên ku di bin desthilatiya mêran de ne ye. Divê kes û derdorên ku li hemberî vê têdikoşin bi rêbazên cûda bixebitin û neşibin dijberên xwe. Heke ku em çêra bikin emê bişibin wan. Dibe mirov carina bitengije û aciz bibe lê ku ev tegiştin bibe şiklekî polîtîkayê, dê meriv bişibe tiştê ku meriv li hember disekine.

**Tu di derheqê jiyana LGBTi de çi difikirî, şiklên ku di nava civakê ji bo ku xwe bidin qebûlkirin bi kar tînin û ji bo jiyînê hildibjêrin?**

Li cîhanê û li Tirkiye jî leberçavbûna LGBTê zêdetir li hin navendan kombûye. Li qadên ku hinekî derfetên demokratîk hene. Niha li Tirkiye tevgera LGBTê li astek baş e lê hîn jî têrî nake. Em vê mijarê pir di nava xwe de nanirxînin û nîqaşan li ser nakin. Ji ber kû êriş zêdetir li ser mijara zayendê ne, polîtîkayên LGBT jî zêdetir li ser vê ne lê divê hinek bi pîvan be. Divê daxwazên me yên din jî hebin. Mesele ya me tenê ne mesela zayendî ye. Jiyan tenê li ser zayendîtiyê nehatiye lênan û tenê bi vî rengî nayê xwendin. Pirsgirêkên pîşe hene, yên jiyanê hene. Divê çawa ku kesên heteroseksuel li her derê dikarin bijîn, LGBTî divê bikaribin bijîn.





**Ji ber ku di warê gotinê de tûj, bixwebawer û zîrek ê, di warê zimên de xwedî tehmek mîzahî û îronîk e û em bi tirsa ku tiştekî ku wê neêşîne û me nede ber nifirên pîrobokan pê re axivîn. Ev e bersivên Esmeray a jin, feminist, LGBTİ, Kurd, nivîskar, şanoger, transeksuel, welatparêz, çepgir û hwd...**

Dema ku me meş a yekem li darxist 50 kes hebû lê niha 50 hezar kes dimeşe. Ev tiştekî müzam e. Têkoşîna LGBT gihêştiye asteke navendî bêberek esasî. Divê di vê astê de şiyar be. Aliyekî civakê rewşa heyî red dike û yê din jî wek dişibîne xwe. Di destpêkê de xaleke me ya hevpar hebû, me polîtîkayên femînîst bi kar tanîn. Di demek nêz de dibe ku tevgera LGBT bibe çend parçeyan û parçebûn wê bibe sedema rengînî û rewşeke baştir.

**Tevî van tiştan tu bi kesayetiya xwe niha li asteke cûda yî. Te xwe bi tena sere xwe hem ji civakê hem jî ji malbata xwe re daye qebûlkirin. Em dikarin bêjin ku di vê mijarê de tu bi serketî?**

Welleh ez nizanim ku bi serketime an na. Dibe ku ji bo ku ez kurd im zêdetir li pêşbim û derdê min ne tenê mesela meseleya zayendî bû û derdê min kurdbûn bû jî. Derdêkî min di derbarê jinên kurd de jî hebû. Min hewlda ku bi van re polîtîkayan biafirînim. Û min xwest ku derdên xwe bi rê ya hunerê bînim ziman. Dema ku te mijarek bi daxuyanî û rêbazên din anî ziman êdî nagêje cihekî, lê bi riya huner tu dikarî bigêjê bi hezaran kesî. Ev tiştekî girîng e.

**Tu wek şanoger li gelek cihan derdikvî ser dike. Li Anatoliya'ye û Ewropa. Tiştên ku tu li ser dikê dibêjî û yên ku tu di jiyana rojanê de dibêjî heman tişt in?**

Tiştên ji rêzê derdikevin û wê derkevin jî. Lê gelek kes dibêjin ku 'me pêşnirxên xwe bi alikariya te çareserkirine. Piştî lîstika te min hin xeletiyên nêzikahiya xwe guhertin.' Ez pir rastî tiştên wisa teme. Carina hin kes di orta lîstikê de derdikevin û diçin. Ji bo wan hin tiştên ku ez dibêjim dibin cihê aciziyê. Carina hin kes matmayî dimînin. Baş e ku ev derdikevin û diçin. Evana diçin û xwe rexne dikin. Ev tiştekî pir baş e.

**Tu niha di jiyana xwe ya rojane de çi dikî û çawa derbas dibe?**

Me di dawiya dawî de lîstikek derxist li Viyana'yê. Projeyek Vîyana'yêbû. Ez meh nîvekê li wir bûm û me ev lîstik lîst. Ez bi lîstikan diçin festîvalên şanoyê. Ez niha 40 salî me û cara yekem evîndarim. Li gor xwe ez niha evîneke mezin dijîm. Ez evîndarî hevalê xwe yê ser dikê bûm û niha em bi hev re ne. Di meha Adarê de dîsa li Viyana'yê nîşandana şanoyê heye. Jiyana rojane niha hinek bi bêhnvedan û razanê derbas dibe.

**Kurdistan di warê LGBT'ê de çawa ye? Tu carina difikirî ku tu li wir bi cîh bibî?**

Ya rast pir ne baş e. Hin pirsgirêk hene. Ez nikarim ku biçin her derên Kurdistanê. Min xwest ku biçim komeleya gundê xwe lê min nikarî biçim. Helbet dîsa jî li Tirkiye baştir e rewş. Min carekê xwest ku li amedê bijîm lê ez tam negihêştim zelaliyek ku ezê bikarim an nikaribim. Baweriya min têrî nekir ku li wir bikaribim bijîm. Lê ez dixwazim ku li Kurdistanê bijîm helbet.

# Urmiyê ziwa dibe


AZİZ TEKİN



**Bi guherîna avhewaya gerdûnî li gelek deverên cîhanê bê avî diqewime û pir gol û cihên avî jî zuha dibin. Ji ber ku dewlet polîtîkayên ji bo vê nameşînin pirsgirêka bê aviyê her roj bêhtir kûr dibe. Gola Urmiyê ku ji bo erdnîgara Rojhilatê Kurdistanê cihî pir girîng digire, ji ber rêbazên dewleta Iranê yên di derbarê xweza û avê de zuha dibe û talûkeyek mezin li ber derî ye.**

Li gor çavkaniyên dîrokî, kurd di dema Medan vir ve li deverên Urmiyê û Rojhilatê Kurdistanê bi cîh bûne. Li gel kurdan azerî, asûrî, ermenî û kaldanî jî niştîcihên Urmiyê bûn û hê jî ev gel li Urmiyê dijîn. Niha niştîcihên Urmiyê nêzikê milyonek e. Çavkaniya navê Urmiyê di gelek zimanan de tê wateya bajarê avê, keştîgehê. Hinek jêder jî navê kevnarê Urmiyê wek Çîçêst didin zanin, Çîçêst peyveke Avêstayî û bi wate ya spî û zelal. Li gor baweriya Zerdeştiyê Urmiye navend e û Zerdeşt li vir jiya ye. Urmiye gelek caran jî bûye navenda serhildanên kurda yên wek Serhildana Emîrxanê Lepzêrîn an jî Serhildana Kela Dim-Dim, Serhildana Şêx Ubeydullahê Nehrî, Serhildana Simkoyê Şikak û Serhildana Eşîra Celalî li Makûyê. Di fermiyeta Komara İslamî ya Îranê de Urmiye wek navenda parêzgeha Azerbaycana Başûr tê bi navkirin. Di vê parezgehê de bajarên kurdnişîn wek; bajarên Mehabad, Xoy, Selmas, Makû, Çaldiran, Miyanduaw, Bokan, Nexede, Şino, Pîranşar û Serdeşt cih digre. Li devera Urmiyê êlên kurd Begzade, Celalî, Dirî, Hinare, Herkî, Gawerk, Kirmanc, Kore Sunî, Seyîd û Şikak dijîn. Urmiye niha jî navendek zindî ya kurdayetiyê ye.

### Gola Urmiyê: Embara jiyanê ya gerdûnê

Gola Urmiyê 37 milyar metrekûp av dihewîne. Dirêjiya golê ji bakur ber bi başûr 135 km, ji rojava ber bi rojhilatê 55 km ye. Di golê de cihê herî kur 16 mêtro ye. Gol bi tevayî qadek 5 hezar 200 km2 digre. Di lîtreyek ava golê de 330 qiram xwy heye. Di nava golê de 102 hev giravên cûr bi cûr cih digrin. Di golê de 5 milyar ton patos, 60 milyar ton potasyom silfat, 240 milyar ton megnezyûm, 28 ton birom û 250 ton lîtyûm çavkaniyên sirûştî hene. Li derdora golê û giravê di nava golê de 26 cins ajalên bi guhan, 41 cins ajalên kaşok, 212 cins çivîk û 26 cins masî dijîn. Ji ber vê dewlemendiya golê UNESCO gola Urmiyê wek "depoya jiyanê ya gerdûnê" bi nav kir. Di navbera salê 1999-2009'an de Gola Urmiyê 5277 km2 kêm bûye û ku çareseriyek neyê dîtin di 2019'an de 2000 km2 yên din kêm bibe. Di 25 salên pêşiyê de dê gol bi tevahî ziwa bibe û ji holê rabe bibe. Bi kêmbûna ava golê re rêjeya xwe jî zêde dibe. Niha di lîtreyek avê de rêjeya xwe yê derketiye 380 milîgiramê. Ev jî dibe sedema ku ajal û nebatên li derdora golê nikaribin jiyana xwe berdewam bikin.

### Sedema ziwabûna Gola Urmiyê

Sedema herî berbiçav a ziwabûna golê çêkirina bendavên li ser çemên ku diherikin gola Urmiyê ye. Bi tevayî 13 çemên ji çiya û kaniyan dizên digihêjin golê. Li ser van çeman bi tevahî 57 bendavên mezin hatine çêkirin û hê çêkirina çend heb bendavan jî berdewam e. Bi çêkirina van bendavan sîstema ava golê xira bû û ev jî bû sedemek ku gol ber bi zûhabûnê here.

Çêkirina rêya Kelanterî ku di nava golê de bajarê Urmiyê digihîne bajarê Tebrîzê jî bûye sedem ku hevsengiya ava golê xira bibe. Bi çêkirina vê riyê re cih guherandina ava golê hat astengkirin û gol bûye du perçe. Astenkirina herîkîna avê di navbera herdû hêlan de bûye sedemek ku gol ber bi zûhabûnê biçe.

Bi çandina çandiniyên ku avê dixwazin û vekirina qadên nû ji bo çandiniyê, jî dibe sedema kêmbûna ava golê. Li derdora Gola Urmiyê jî bo çandiniyan li ser gelek çemên ku dirijin golê avbend hatine çêkirin û berê avê bi rêya qanalan tê guherandin. Li gelek cihan bîr hatine vedan û ava jêrzemînê bêrêjeyî tê bi kar anîn. Ev jî dibe sedemeke din a ziwabûna avê.

### Polîtîkayên Iranê jî golê ziwa dikin

Polîtîkayek kevnar ya dewleta Îranê jî ewe ku niştecihên kêmjimaran ji cihê wan bike û wan li deverên din ên dewletê belav bike. Bi vê sedemê bertekên ku li hemberî van çêdibin astenk dikin û li van deverên ku wan cih dikin zêdetir diçewisînin. Di dîrokê de gelek caran bi vî avayî niştecihên kêmjimar ên li Iranê dijîn ji cihê xwe hatine qewirandin. Bi zûhabûna golê re qada golê vedigere çolekê û niştecihên wir neçar dimînin ku ji wir koç bikin. Bi zûhabûna golê re gelê li wir ku debara xwe bi çandiniyê dike dê nikaribin li wir bimînin. Li gor lêkolînvanan bi zûhabûna golê 30 milyar xwe derkeve holê û ev xwe bi bayê qadek berfireh di bin bandora xwe de bihêle û bibe sedema nexweşiyên tenge nefesî, pence şêra pişikê, nexweşiya zarokan û bi sedan nexweşiyên din xelkê deverê dixe metirsiyê û duçarî koçê dike.



### Çareseriya xilaskirina golê

Ji bo xilaskirina golê gelek saziyên sîvîl yên navneteweyî xebatan dimeşînin. Pisporê avê Dr. Tuğba Evrim Maden di derbarê xilaskirina golê de got ku Iran dizane ku pirsgirêka Gola Urmiyê bo herêmê xetereyeke. Maden axaftina xwe waha dirêj kir: " Di dema Ahmedînejad de planên xilaskirinê hatin kirin, bûdçe hat veqetandin. Rûhanî jî di dema hilbijartinê de soz da ku golê xilas bike. Weke ku tê zanîn li Iranê kêmasiya avê heye. Pirsgirêka wan ya mezin av e."

Bêyî vê rêyek din a zêdekirinna ava golê jî ev e ku bu riya qenalan ava çemê Erezê bigihêje golê û herwekî din ku çemê Zapê jî berê wî li golê bê girêdan.

Serokê Civaka Aştî û Pêşveçûna Kurdistanê Temûr Mûradî ku xebatên sîvîl di derbarê Rojhilatê Kurdistanê de dike bo xilaskirina golê dibê ku: "Bûdceyek berbiçav bo rizgarkirina gola Urmiyê hewce ye. Tê zanîn ku bi kêmanî bi qasî 3 hezar milyarî bûdce pêwîst e, lê di bûdceya sala 2013'an de tenê 50 milyon tûmen hatiye diyarkirin, lê ev bûdce pir kêm e. Ew xemsarî û kêmkariyên dewletê bona hilnegirtina gavên pratîkî ye. Karbidestên dewletê tenê soz didin, di rewşekê ku ev gol roj bi roj xerabtir dibe û ber bi kirîzeke kûr ve diçe. Berfirehkirina erdên cotkariyê li vê herêmê ji 110 hezar hektaran gihêş 450 hezar hektar. Divê cardin erdên cotkariyê bê kêmkirin, kolana bi hezaran bîran avê li golê kêm dike û dibê ev bîr bêne girtin û di heman demê de ava di bendavên li ser çemên ku diherike jî bê berdan."

# ‘Ji Keleha Mêrdînê derkevin’



**Ji cihên dîrokî yên Kurdistanê ku ji salên dirêj virve ye di çarçove ya tekoşîna bi PKK’ê re ji aliyê arteş û saziyên fermî ve hatine dagirkirin yek jî Keleha Mêrdînê ye. Keleh hê jî dibin dagirkirina MIT û erteşê de ye. Şareder Türk dixwaze ku êdî kelah bê valakirin û ji ziyarete gel re bê vekirin.**

Hevşaredarê Bajarê Mezin ê Mêrdînê Ahmet Turk ji bo Keleha Mêrdînê ku demeke dirêj e ji aliyê MIT û hin saziyên leşkeri ve hatiye dagirkirin dîtbariyên xwe û şaredariyê parvekir û xwest ku êdî Keleha Mêrdînê bê valakarin û saziyên fermî ji kelehê derkevin.
Wek tê zanîn li Kurdistanê gelek cih û warên dîrokî di bin dagirkirina leşker, polis û saziyên fermî de ne. Ji van cîhan ya herî balkêş Birca Belek û Keleha Mêrdînê ye. Ji bo Birca Belek beriya çend salan daxwaza valakirinê hatibû kirin lê tû pêş ve çûn derneketin holê heta niha. Ya din jî Keleha Mêrdînê ye ku him di warê dîroka bajêr û Kurdistanê de, him di warê cihê xwe yê stratejîk û him jî di warê dîmenê de xwedî balkêşiyek girîng e, lê di bin zeftkirina MÎT û artêşê de ye. Ji bo ku keleh ji vê bê rizgarkirin gavek girîng hat avêtin û şaredarê bajêr xwest ku dewlet kelehê valake.
Seroka Beşa Karên Civakî û Xebatê ku yekîneya jêrîn a şêwirmendiya siyasî ya Sefaretxaneya Almanyayê ye Moira Ketnner hat serdana Şaredariya Bajarê Mezin a Mêrdînê. Di serdanê de Hevşaredarên Bajarê Mezin ên Mêrdînê Ahmet Turk û Febrûniye Akyol amade bûn. Di serdanê de Kettner der barê Mêrdînê de pirs li Hevşaredaran kir û agahî stend.
Hevşaredarê Bajarê Mezin Turk di axaftina xwe ya li vir de anî ziman ku wan di bin deynekî giran de şaredarî wergirtine, pêvajoyeke tengavî dijîn û plan dikin ku bi projeyan re vî barê deynan çareser bikin.
Turk diyar kir ku ew li gorî çanda Mêrdînê xebatên xwe dimeşînin û got, "Keleha Mêrdînê ev 50-60 sal e weke baregeheke NATO'yê ya leşkerî hatiye bikaranîn. Lê belê bêguman ew teknolojî bi temamî rabûye. Lê hînê leşker û komeke endamê MÎT'ê ew der dagir kirine. Divê ew der were valakirin. Bi taybetî jî li wir dîrokeke Suryaniyan û Ermeniyan heye, avahiyên dîrokî hene. Divê ev ji nû ve bên restorekirin û bi cîhanê werin nasandin. Ji bo nîşandana van bedewiyan, em difikirin xebatekê bimeşînin."

**Kurdistan ne tenê ya kurdan e**

Turk got, "Xaka Kurdistanê ne tenê ya Kurdan e" û destnîşan kir ku ev 5 hezar sal in suryanî, ermenî û kurd bi hev re li vê erdnîgariyê dijîn. Turk da zanîn ku li navenda Mêrdînê û hin navçeyan gelê ereb jî dijî û got, "Em dixwazin rêbazeke nû ya rêveberiyê ku maf û hiqûqa van gelan înkar nake, bicih bînin. Em bawer in eger Tirkiye mîna Mêrdînê bûya, mîna gelên li vê derê bijiya, niha li Tirkiyeyê ti pirsgirêk nedima."

---

# Amed di lîsteya UNESCO’yê de!

**Ji bo sûrên xwe û Baxçeyên Hewselê yên Amedê bikeve nav Lîsteya Mîrata Cîhanê ya ÛNESCO'yê, biryara revîzeyê hate girtin. Kışanak dibêje em êdî destûrê nadin ku li Geliyê Dîcleyê avahî bên çêkirin."**

Hevseroka Şaredariya Mezin a Diyarbekirê Gultan Kişanakê got ji bo ku Diyarbekir bi sûrên xwe û Baxçeyên Hewselê bikeve nav Lîsteya Mîrateya Cîhanê ya ÛNESCOyê, Meclisa Şaredariya Mezin di Projeya Geliyê Dîcleyê de biryara revîzeyê daye. Em dê destûr nedin ku li Geliyê Dîcleyê avahî bên çêkirin.
Kişanakê di civîna "Plana Stratejîk a 2015-2019an a Diyarbekirê" ya ku li Hêwana Meclisa Şaredariya Mezin de hat li dar xistin de axivî û destnîşan kir ku bi saya ew cihên ku qal dikin Diyarbekir dê di lîsteya cîhanê de cî bigire. Kişanakê diyar kir ku dê di lîsteya firmayên mezin ên der barê tûrîzmê de yên li çar aliyên cîhanê û operatorên tûrîzmê de Diyarbekir jî cî bigire û wiha axivî: "Tûrîst dê bêtir bên Diyarbekirê. Hatina tûrîstan dê bibe sedem ku esnafên me bêtir bixebitin û dahata tûrîzmê ya bajêr zêde bibe. Ev xebat dê heta Hezîrana sala pêşiya me berdewam bike û Ûnesco dê biryara xwe bide. Em jî dê hemû xebatên xwe yên nasandinê, xebatên der barê heyînên me yên dîrokî û çandî li gor vê yekê bikin."

**Emê kanên qûmê ji hewzeya Robara Dîcleyê derxînin**

Kişanakê bal kişand ku divê di vê çarçoveyê de Projeya Geliyê Dîcleyê bê revîzekirin û got ku hin xebatên ku di vê projeyê de pêş dibînin ne li gor krîterên ÛNESCOyê ne.
Kişanakê got ku ji ber vê yekê meha borî biryar dan ku projeyê revîze bikin û wiha axivî: "Ji bo ku Diyarbekir bi sûrên xwe û Baxçeyên Hewselê bikeve nav Lîsteya Mîrateya Cîhanê ya ÛNESCOyê, Meclisa Şaredariya Mezin di Projeya Geliyê Dîcleyê de biryara revîzeyê da. Em dê destûr nedin ku li Geliyê Dîcleyê avahî bên çêkirin. Me komîsyonek ava kir ku perava Robara Dîcleyê diyar bike. Li her du aliyên peravê herî kêm cihên şîn ên kamûyî yên bi qasî 300 metekareyî, rêyên meş û bisîkletan dê bên çêkirin. Em dê destûr nedin tu xebatên ku zirarê dide geliyê me. Xebatên me berdewam dikin. Me soz da ku em Robara Dîcleyê wekî hewzeyê bikin plana masterê. Di vê çarçoveyê de kanên qûmê dê ji hewzeya Robara Dîcleyê bên derxistin. Ev robar mîrateya çandî û dîrokî ya hemû gelê me ye. Parastina vê robarê peywira me hemûyan e."



# Şaristaniya ronahiyê!





BİLAL SOLMAZ

Di dîroka şaristaniya mirovahiyê de Qralgeha Komageneyê bi jiyana xwe ya aştiyane ji bo niha minakek bi îbret e. Qralgeha Komageneyê heta diroka dawîbunê 234 sal li sar qada dirokê ji bo şaristaniyê rolên erênî anî cîh û 234 sall bi evayekî serbixwe jîyenek di nava aştiyê de derbas kir.

**Çiyayê bi efsûn**

Qada lihevrasthatina şaristaniya rojava û rojhilat li ser avahiyek muhteşem û newazeya li ser bilindahiya 2150 m. Çiyayê Nemrudê, bi paykerên xwe yê ku bilindahiya wan li dora 10 metreyî ye û bi kitabeyên xwe ku bi metreyan dirêjîya wan heye di nav UNESCO de ye. Çiyayê Nemrud, ji billi paykerên dêw û gorên abîdewî bi dîmenên rojhihat û rojava jî bala mirov dikşine. Her sal bi hezaran mirov ji hemu welatên li sar nexşeya dinyayê bi rê dikevên û tên ku wan avahiyên newaze bi zindi bibinin û bi taybetî Çiyayê Nemrudê ziyaret bikin. Her gaveke ku ber bi ser çiyayê Nemrûd de tê avêtin dirok û şaristanîyê nêzîktir dike û her metreyek ku mirov li ser bilind dibe efsûna Çiyayê Nemrud ji dil dide hîskirin. Li gori hin kesan efsûna çîyayê Nemrudê di paykerên li ser bandeva vî çîyayî de veşartîye li gorî hin kesên din jî ev efsûn di dîmenên rojava û rojhilata vî çîyayî de veşartîye. Ev du hezar salin ku paykerên li ser Çiyeyê Nemrud her sibeh rojê pêşwazî dikin û her êvar xatir ji rojê dixwazin. Bêguman taybetiya Çiyayê Nemrûdê Qralgeha Komageneyê ye ku li ser û li derdora vî çiyayî hatîye avakirin. Qralgeha komagene yek ji kralgehên heri balkêş û pêşketîyên serdema antîk e. Ev kralgeh li ser herêma bajarê Semsurê B.Z. di sala 162'an de hatiye avakirin û P.Z. di sala 72'an de bi dawî bu.

Qralgeha Komageneyê heta diroka dawîbunê 234 sal li sar qada dirokê ji bo şaristaniyê rolên erênî anî cîh û 234 sel bi evayekî serbixwe jîyeneke bi aşitiyê derbas kir. Îro dema ku em li ser ruyê dinyayê dinêrên li gelek dewletan şer û kuştin tên xwanê dikin lê belê ji iro du hezar sal berê li herema Semsurê Qralgeha Komagene'yê bi tu welatan re neketîye nav şer û pevçunek di navbera Komagene û welateki din de nehatîye holê. Ev rewş nîşan dide ku mirovahî du hezar sal şûnde di mijara aştiyê de ne li pêş e.

Prof. Dr. Mehrdad R. İzady di pirtuka xwe ya bi navê "Kurd" de Qralgeha Komagene'yê û gelê Komagene'yê wek "Kurdên Zelanî" bi nav dike. İzady di pirtûka xwe de wiha dibêjê "Zelaniyên Komagene'yê welatê xwe, zelaniya biçuk (Zilan), ava kirin. Zelaniyên Komagene'yê, heri zêde bi avahiyên newaze ku li ser Çiyayê Nemrûd li bakurê Kurdistanê hatine avakirin tênasîn. Gora mezin, mozole û seriyên xweda û xwedavandên niha li ser Çiyayê Nemrûd li ser piyanin Ji alîyên Asurîyên Antik ve Komagene wek Kummuhu tê zanin û tişteki ku heta iro hatiye klanek bi navê Kowa(Kawa-Koma) ye û ev klan kurd e. Kurdên Ku navê xwe dane vî klanî li ser vê heremê xwedîyê desthilatdariyê ne. Di vê demê de Persên ku bala wan li ser rojava û Rome'yê ne li Semsurê tên cem hev û li vê heremê şaristaniyek nû ava dikin. Ji ber vê yekê paykerên li ser Çîyayê Nemrûd li ser rasthatina çanda Pers û çanda Romeyê ava buye. Diroknasê Yewnan di pirtûka xwe ya navdar ya bi navê "Cografya" de ji bo Qralgeha Komagene'yê wiha dibêje, "Qralgeha Rome'yê girêdayî Roma'yê bu û malbata kralgehê li bajarê Samsatê îkamet dikirin. Pişti ku li herêma Semsûrê çanda Pers û Rome'yê tê cem hev û Qralgeha Komagene'yê ava dikin, ev Kralgeh li ser şaristanîya mirovahiyê rolekî taybet dilîze û balê dikêşe ser xwe. Piştî ku Qralgeha Komagene'yê ji aliyê Rome'yê ve hat hilweşandin, malbata Qralgeha Komagene'yê surgunî Roma'yê bun û ev malbat di nav rêveberiya Roma'yê de bi salan kar kirin. Malbata Komagene'yê di nav rêveberîya Romeyê de bi kar û bi zanista xwe heta demeke dirêj teybetiya xwe parêst in.

Her wiha Çiyayê Nemrûd wek 8. newaze yê cîhanê di lîteratûra cîhanê de cîh digire. Lê tevî vê ev dîroka ew qas girîng û bi wate niha di nava bêxwedîbûnê de ye. Peyker û anitên xwedayan hem ji aliyê bûyerên xwezayî ve û hem jî bi destê mirovan têne texrîbkirin. Ji ber ku polîtîkayeke dewletê ya di derbarê Nemrûd de nîn e, aqubeta vê derê jî dibe cihekî aborîyê jî, di navbera Semsûr û Meletiyê de lihevnekirinek derket holê. Şaredariya Meletiyê rê bir ser Nemrûd û Semsûrî li dijî vê derketin kolanan û bi meş û xwepêşandanan ji Nemrûd xwedî derketin. Heya hindik mabû ku ev mijar di navbera herdû bajaran de bibe mijara referandûmê jî. Qedera Nemrûd ku ji dîrokek wiha tê ne diyar e ku dê berv bi ku de biçe...



# Di şopa dengbêjên jin de

AZAD XANZADE

Dengbêjî di warê çanda kurd û Kurdistanê de wek bingeh tê bi navkirin ku hem di warê gihandina civakî û him jî di warê gihandina çandê de bûye çavkaniya her alî. Di kilam û gotinên dengbêjan de mêjû û ezmûnên gelê kurd bi hemû zindîtiya xwe cih girtiye û hejî ev rewş berdewam e. Her çi qas jinên dengbêj di nav kurda de neyên zanîn û hejmara wan kêmbe jî; ji Fatma Îsa bigre hetanî, dengbêjên radyoya Erîvanê, ji Eyşeşan bigre hetanî Meyremxanê gelek jinên dengbêj mohra xwe li dîroka mûzîka kurdî xistine. Di jiyan û xebatên denbgêjên jin de çandek ku bêyî dîrok û civakê derdên xweyên taybet jî dihewînin heye. Yek ji jinên ku niha şopa wê rastiyê dişopînin û wan rêbazan di warê muzîkê de dixabite Xalîde ye.
Dengbêj Xalide li Licê ya Diyarbekirê hatiye dinê lê bi eslê xwe ji Palo'yê ye. Ji malbatek koçer tê. Koçertiya wan derfeta gerê daye wê ku çiya bi çiya, zozan bi zozan bigere. Di vê gera xwe de xweza û dengbêjiyê nas dike ku ger mihenkeke dengbêjiyê ye. Her çi qas ev bîst û du sale li Stenbolê be jî bixwe dibeje ku bi rûhîyet hê xwe li çiya û baniyên welat hîs dike. Ji ber ku malbat û derdora wê bi piranî ji denbêjiyê re têkildar in, Xalîde li ser mijarê bêhtir derfetên pê de çûnê bidestdixe. Piştî ku di hin komên muzîkê de cih digire, di 2006'an de albûma yekem a solo bi navê 'Xewn' amade dike, û niha jî amadekariya albûmek din dike. Li ser jiyan û muzîk û jiyanê em pê re axivîn û va ye derdê Xalîde'yê.

**Di nava muzîka kurdî de kesên ku şopa dengbêjiyê diajon û rêzika mûzikê bi wir ve girê didin kêm in û dengbêjên jin jî bêhtir kêm in. Dengbêj Xalîde ku wek dengbêjek hemdem distrê û li ser mûzîka kurdî xebatê dike, niha jî amadekariyên albûma xwe ya duyem dike.**

**Hevnasîna te û muzîkê çawa çêbû?**

Hev nasîna min û mûzîkê bi teknîkî di sala 1996'an de dest pê kir. Min çavên xwe bi têkildariya muzîkê re vekirine. Însan bi xwe xweza, xweza bi xwe mirov e. Zaroktiya min di nav koça koçera, bêrîvan û şivanan de derbas bû. Ji ber wê min hestên xwe ji wir girtin. Derdora min kesayetiyên azadbûn, çanda gelêrî, dawet, lîstikên li zozana. Dema zarokbûm min digot ezê strana bibêjim û ne tenê malbat, wê her kes li min gundar bike. Di zaroktiyê de ez dixistin serê govendê, ji min re digotin gula govendê. Di malbata min de dengbêj hene, hezkirina min ji wir tê. Bavê min jî lêkolîn li ser dengbêjan dikirin, çi qas qeydên dengbêja hebe dianî mala me. Hayîdariya min a dengbêja ji wir tê. Ev gelek sal e ez li Stenbolê me, bi her awayî di nav qapîtalîzmê de me, çawa dibe ku ez têkiliya xaka xwe qut nakim. Ev di paşxana min de heye. Di sala 1999'an de ez di koroya NÇM'ê ya pirdeng de xebitîm. Piştre ez bi qasî 3 salan ji muzikê dûr ketim. Dû re min xebata albûma 'Xewn' kir. Ez wek rock, blus caz, slow, pop jî dikarim bi deng bikim lê derket holê ku dema ez kilamên dengbêjiyê dibêjim ez xwe baştir hês dikim û min giranî daye dengbêjiyê

**Tu wek dengbêjek jin bi çi pirsgirêkan re rû bi rû dimînî?**

Tekoşîna Kurdistanê rêya jinan jî vekiriye, ji ber wê ne wek berê ye. Jin çi qas li azadiya xwe xwedî derkeve dengê wam ew qas azad dibe. Divê em bi xwe wan derfetan çêkin. Ev derfet jî bi zanetî tê kirin. Ku ez bikaribim bibim bersiva jinên kurd û hûnera qedîm, bo min bes e. Di şexsê jinan de wê şoreşa hûnerê çê bibe. Niha min stranek amade kiriye li ser hezkirinê, li ser hezkirina şoreşê. Her çiqas cîhan ber bi globalîzmê ve here jî, Kurdistan bûbe çar perçe jî zehmetiyên din hene; wek jinek dengbêjî. Lê ev hêzek pir mezin dide min, hewce ye ez vê hêzê bi rolekî baş li hember van astengiyan bikim mertal. Ddengbêjî jî êdî ber bi qadek modern ve diçe. Maqamek saba, maqamek uşaq, maqamek huseynî, maqamek hîcaz, maqamek beyatî naguhere. Mûzîk modern be jî maqam mîna xwe dimînin. Wek dengbêj ez Garabet û Şakiro ji xwe re pêşeng dibînim. Di aliyê perwerdekirina dengbêjiyê de qet xebat nehatine kirin ji ber wê ez mamostetiya deng dikim. Ya min tiştekî wîjdanî ye, ez xwe wek deyndar dibînim û ji bo vê min ev bar daye ser xwe. Di cîhanê de estûramanê herî bilind deng e, tiştê dû re derketine însana îcad kirine. Estûrûman belavbûna dengê însana ye. Em jî wek şîr ji dayîka xwe bixwin, divê pêdiviya civakê derbarê dengbejiyê de bê dîtin.

**Di çanda dengbêjiyê de zimanekî jinbûnê hatiye avakirin gelo?**

Dema dîwan dihat avakirin, jin li dîwanê tunebûn. Wek mînak, jinekê kilam digot lê bi hêstên xwe azad bihêse nedikarî bibêje. Mêra hema dor jê diştendin û diçû di nav civakê de digot. Jin li pişt perdeye diman û nikaribûn ku derketina û bi ser de jî mêra kilamên wan wek yên xwe belav dikirin. Yê ku çêdike jin e lê li ser mêr tê barkirin. Sedemek derketina min jî ev e. Lê dengbêjên bi zimanê jintiyê dinivisînin jî hene. Bo mînak kilama 'Werî Yeman'

**Dema ku dengbêjek ji xaka xwe dûr be, bikaribe hestên gel di hûnera xwe de bide?**

Bi rastî ez ji xakê dûr nîn im, ez fizîkî li vir im lê rûhê min li wir e. Ez li Stenbolê me lê çanda popîler li ba min tûne, ez hê ew kesim ku li çiyayên Kurdistanê dijîm. Di pêşerojê de jî hewl didim ku herim û li welatê xwe bijîm. Xaniyekî ji xwe re bigrim bostanekî bajom. Heke ku ji destê mirov tiştek bê pirsgirêk namîne.





**Hûn rewşa muzîka kurdî ya heyî çawa dibinin û pêşniyarên we hene ji bo muzîka kurdî?**

Berê di lîstikên gelêrî de, di daweta de mûzîkeke bi qelîte hebû. Niha qalîte nema ye. Hetanî ku em xwe ji hestên popîlist xilas nekin em nikarin van astengiyan li dû xwe bihêlin. Divê hûnermend xwe ji hestên parsektiyê xilas bike. Hûnermend tiştên bilind diafirînin û divê li gor vê xwe sazbikin. Ketin di kesayetiyê de dest pê dike. Ev qelîte ya ku asta wê ne baş e hinek jî girêdayî hûnermendane. Divê bi tiştê piçûk re dem neyê derbaskirin û em li saziyên xwe xwedî derkevin, lê em tarza qilasîk jî derbas bikin. Em kurd in, xwedî doz bin. Xwedî Kurdistan in. Hewce ye ku meriv ji teknîk û pêşveçûna cîhan sûd bigire lê di heman demê de hûnera gel jî çêbike. Niha dir her alî de derfet hene ku meriv xebatekê bike û bikaribe bazara her alî jê re bibîne.

**Di pêşerojê de tu dixwazî çi xebatan bikî?**

Min kilamek nû çêkirî ye û bi qasî şeş kilaman jî min xilas kirîne. Ezê hem xebata albûmek nû bidim ber xwe û hem jî ji stranên xwe re klîban bikesim.